BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar:30 01-07 Kanûn 2014 basnews.com



## Mizgîn Tahir

Muzîka rojhilatî xwe hîn îspat nekirî ye

R14-15

## Rojava: Serdanên navnetewî

Li Rojavayê Kurdistanê û bajarê Kobanê ku ev du mehe e di bin dorpêçê de ye, piştî çûyîna Pêşmerge serdestiya DAÎŞ'ê her diçe kêm dibe. Hêzên kurd ku bi çekên giran êrîşên DAÎŞ'ê kirin piraniya bajêr rizgar kirin. Di vê navberê de hefteya borî kevnewezîrê frensî Kouchner û Serokê Partiya Çep yê elman Gysi û şandeyek PA'yê serdana Rojava kirin. Rûpel 04

## Dêrsîm

Deriyê zîv, derbenda sîm, Dêrsîm. Deriyê Kurdistanê. Welatê çiyayên bilind, geliyên kûr û çemên har. Hêlîna qertelan, welatê bazan. Xaka serhildêran, axa maxrûr.

Rûpel 10-11

## Li Dêrsimê kêşe heye, careserî nîn e!

Kêşeya Dêrsimê ya bi çûyîna Davûtoglû ya Dêrsimê careke din hatî rojevê ne tenê derbarê komkujiya ku di 1938'an de pêk hatî û encamên ku wê ew derxistî holê de ne.

Digel zîzdariyên derbarê komkujiya Dêrsimê û derxistina holê ya encamên wê meseleya elewitiyê jî li holê bê xwedî maye. Rûpel 05

## Hatina Pêşmerge cîhê şanaziyê ye



Rûpel 08-09

### Serkeftinên Pêşmerge didomin

# Hewlêr dibe navendeke biryardar



Li Herema Kürdistanê li aliyekî şer berdewam dike û li aliyê din hatûçûna seferên dîplomasiyê jî didomin. Serfermandarê Artêşa Amerîkayê Odierno ji bo koordînekirina operasyonên dijî DAÎŞ'ê serdana Hewlêrê kir. Serokê Partiya Çep ya Alman Gysi yekem car bû mêvanê Kurdistanê. Wezîrê Dervê yê Çek Zaoralek di serdana Barzanî de sozê şandina alîkariya leşkerî û biryara vekirina konsolxaneya Hewlerê da. Serokkomar Erdoğan jî di nêzîk de diçe Hewlêrê.

Seferên dîplomatîk û serdana aktorên payebilind yên cîhanî bo Hewlêrê, careke din teyîd dike ku peytexta Kurdistanê di pêşeroja nêzîk de wê bibe navendeke biryardar ya siyasî li Rojhilata Navîn. Di vê navberê de li heremên Kerkûk û Musilê, êrişên Peşmergê ser DAÎŞ'ê didomin. Li şerên çend heremande bi dehan emîr û çekdarên êrişkaran hatin kuştin. Hefta borî bajarên Celewla û Sadiye tevî dehan gund ji DAÎŞ'ê hatibû rizgarkirin. Rûpel 02-03

# 'Xwîna şehîdên me vala naçe'

Eta Hacî Mehmûd, kurê Sekreterê Giştî yê Partiya Sosyalîst Demokrat a Kurdistanê (PSDK) Hemeyê Hacî Mehmûd, roja çarşema borî di şerê li dijî DAIŞê de jiyana xwe jidest da. Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî bi rêya telefonê ligel Hacî Mehmûd, hevxemiya xwe bi qetilkirina kurê wî li eniya şerê li dijî DAİŞ'ê ragihand û serxweşî lê kir.

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî serxweşî li Sekreterê Giştî yê PSDK'yê Hemeyê Hacî Mehmûd kir û jêre got, "Xwîna şehîdên me vala naçe."

Li gorî daxuyaniyeke Serokatiya Herêma Kurdistanê, Barzanî ji Hemeyê Hacî Mehmûd re gotiye: "Kurê te, kurê min jî bû, ew pêşmergeyên qehreman ên ku di şerê bergirîkirina li kerameta gelê me canê xwe gorî kirine, zarokê min û te ne. Serokê Herêma



Kurdistanê wiha ji Hemeyê hacî Mehmûd re domand: Em hemû bi şehîdbûna zarokên miletê xwe xemgîn dibin û xwediyê sersaxiyê û hevbeşî xema hev in."

Her di wê pêwendiyê de, "Serok Barzanî serxweşî li malbatên hemû pêşmergeyên qehreman kir, ku bi qehremanî xwîna xwe kirine qurbanî bo serbilindiya gelê xwe."

## Têgeha sînemaya kurdî bi cîh dibe

Dîroka sînemayê 100 saliya xwe derbas kir û sînemaya kurdî jî di asta xwe kifşkirinê de ye. Astengiyên sînemaya kurdî diyar in; ji kêmasiya aboriyê bigre heta astengiyên siyasî, ji nebûna lîstikvanan hetanî biçûktiya piyasê.

Rûpel 16

Mehmet Gültekin
Lehengekî kurd di wêjeya Nemsa'yê de R12

Portre
Şevket Epözdemir R13

## Kurê Serokê PDSK'ê Eta Mihemed jiyana xwe ji dest da

Mihemed Hecî Mehmûd, li gel kurê xwe Eta Mihemed di heman eniyê de li dij DAIŞ'ê şer dikirin. Kurê Mehmûd, Eta li herêma Kerkûkê di pevçûnekê de hat qetilkirin. Eta'yê ku li bakurê Kerkûkê, li eniya gundê Til Werdê, di kêliya ku bi bavê xwe re li dij DAIŞ'ê şer dikir jiyana xwe ji dest da û hate binaxkirin. Bavê Eta, Mihemed Hecî Mehmûd jî diyar kir ku ew ji bo kurê xwe negiriya ye lê ew ji bo hemû zarokên gelê xwe yên ku ji bo welatê xwe canê xwe feda kirine giriya ye. Hecî Mehmûd li ser gora kurê xwe axivî û da



zanîn ku Eta her ji wî re qala Kurdistana Azad dikir û ji bo kurê xwe wiha got: "Kurê min, min çiqas dixwest ku tu Kurdistana Azad bibînî. Te her ji min re Kurdistana Azad vedigot.

Mirina Kurê Mihemed Hecî Mehmûd Eta, mirina kurê Serokê PYD'ê Salih Muslîm Şervan Muslîm ku sala çûyî di şerê li Rojava de jiyana xwe ji dest dabû û zarokên Serokê Herêma Kurdistan Mesûd Barzanî ku di eniyên pêş de şer dikin û gellekên din ji bo vê taybetiyê mimûne ne.

## Mesûd Barzanî li eniya pêş de

Serokê Herêma Kurdistan Mesûd Barzanî, li gel Wezîrê Pêşmerge Mistefa Seyîd Qadir, bi mebesta rewşa eniyên şer bişopîne bi postê Serfermandarê Hêzên Giştî yên Pêşmerge çû eniyên Mexmûr û Giwêr ên Mûsil û Dûbiza Kerkûkê. Barzaniyê ku berê jî çûbû di kozikên eniyên pêş de fermandariya Pêşmerge kiribû, bi Wezîrê Pêşmerge Mistefa Seyîd Qadir û fermandarên van eniyan re civînan pêk anî. Li gor agahiyên ku peyamnêrên BasNûçe yên herêmê radigihînin Barzanî, di van civînan de di



derbarê pêdiviyên leşkerî yên Pêşmergeyên ku di eniyên Til Werd, Mekteb Xalid û eniyên din de şer dikin de hatiye agahdarkirin.

Di derbarê serdana eniyên şer a Serokê Herêma Kurdistan Mesûd Barzanî de Berdevkê Wezareta Pêşmerge Cebar Yawer ji BasNûçe re axivî. Yawer got: "Serok Mesûd Barzanî bi postê Serfermandariyê, bi mebesta moral bide Pêşmerge û pêdiviyên eniyan destnîşan bike li eniyan digere û bi fermandarên eniyan re li ser babetên taktîk û stratejîk civînan pêk tîne."

## Li Hewlêrê beroşa dîplomasiyê dikele

# Dîplomasî û şer di milê hev de

Çûnûhata dîplomatîk a Hewlêrê ya ku ev çend heftene zêde bûne û serdanên aktorên siyasî yên payebilind ên ku rêgeha siyaseta dinyayê diyar dikin, geşedanên dîrokî ne û ev geşedan didin xuyakirin ku Hewlêr êdî navendeke grîng a biryardar a Rojhilata Navîn e. Geşedanên dîplomatîk ên ku tê payîn wê di hefteyên pêş de pêk bên jî vê yekê piştrast dikin. Di vê navberê de, li Başûrê Kurdistanê, li herêmên Kerkûk û Mûsilê êrîşên Pêşmerge yên li dij DAIŞ'ê dom dikin û weke tê zanîn hefteya borî navçeyên Celewla û Sadiye ji DAIŞ'ê hatibûn rizgarkirin.

Piştî îmzekirina peymana petrolê ya di navbera Hewlêr û Bexdayê de, bi ser Tirkiyeyê ve destpêkirina herikîna petrola Kurdistan a ji bo bazara cîhanê û li hember vê yekê, şandina beşek ji pereyên bûdceya Iraqê ya para Herêma Kurdistan, diyar dike ku heta niha derz li peymana petrolê neketiye. Lê dîsa jî di derbarê peymanê de Lijneya Herêma Kurdistan a ku ji bo bicihanîna xalên peymanê raydar e, di rojên pêş de ji bo rêzikên peymanê bi encam bike wê biçe Bexdayê û bi berpirsên Hikûmeta Navendî re hevdîtinan pêk bîne.

Ji alî din ve hefteya borî piştî hevdîtina bi Ahmet Davutoğlu re Barzanî gotibû, "Mercên nû derketine holê û pêvajoyeke nû destpê kirî ye. Em hêvî dikin destpêkeke nû pêk bê" Ev axaftina Barzanî jî diyar dike ku Davutoğlu destvala vegeriya ye. Ji ber ku piştî Davutoğlu wê di hefteyên pêş de Serokwezîrê Tirkiye R. Tayyip Erdoğan jî biçe Hewlêrê û Davutoğlu Barzanî vexwendiye Enqereyê, diyar dibe ku pêdiviya Tirkiye ya ji bo têkiliyên xwe yên bi Herêma Kurdistan û DYA û her wiha Ewropa re ji nû ve bigeşîne tekane rê, rêya bi ser Hewlêrê ve ye.

Serdanên hefteya borî ya Serokwezîrê Tirkiyeyê Ahmet Davutoğlu ya Bexda û bi taybetî ya Hewlêrê, ji bo ji nû ve zindîkirina têkiliyên Hewlêr, Bexda û Enpereyê ku piştî êrîşên DAIŞ'ê derzên mezin lêketibûn bû. Çûna Davutoğlu ya Hewlêrê, û serdana R. Tayyip Erdeğan a Hewlêrê ya ku wê hefteya pêş pêk bê û vexwendina Davutoğlu ya Barzanî ya ji bo Enqereyê nişaneyên girîngiya Hewlêrê ne.

### Serfermandarê DYA li Hewlêrê ye

Ji alî din ve li Herêma Kurdistan, ji aliyekî ve şer bi dijwarî dom dike û ji aliyê din ve di derbarê Petrol û berdewamiya şer de dîplomasiyeke mezin dimeşe. Bi van mijaran re girêdayî, bi mebesta birêvebirina operasyonên li dij DAIŞ'ê, Serfermandarê DYA General Raymond Odierno li gel balyozên DYA yê Hewlêrê Josaph Pennington û yê Bexdayê Stuart Jones û hin berpirs û pisporên karûbarên leşkerî, bi Serokê Herêma Kurdistan Mesûd Barzanî re hevdîtinekê pêk anîn. Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî, Şêwirmendê Sîxurî û Ewlehiyê Mesrûr Barzanî, Wezîrê Pêşmerge Mistefa Seyîd Qadir, Serokê Dîwana Serokatiyê Fûad Huseyn, Cîgirê Wezîrê Pêşmerge Enwer Hecî Osaman, Berdevkê Hikûmetê Sefîn Dîzayî û Berpirsên Parastina Giştî Ferîk Şerwan û Cebar Yawer jî beşdarî hevedîtinê bûn. Di hevdîtinê de Serfermandarê DYA Raymond Odierno, ji ber êş û azarên ku DAIŞ bûye sedem, xemgîniya xwe û gelê Amerîkî pêşkêşî Barzanî û gelê kurd kir û anî ziman ku ew ji bo pêkanîna hemahengiya di navbera hêzên ku li dij DAIŞ'ê şer dikin û hêzên Hevpeyman û her wiha ji bo ramanên Mesûd Barzanî yên di derbarê şer de guhdarî bike hatiye Hewlêrê. Odierno balê kêşa ser hemahengiya di navbera Pêşmerge û Hêzên Hewayî yên Hevpeyman û got: "Ev hemahengî pêşî li serkeftinan vekirî ye û ewê pêşî li serkeftinên hin mezintir veke." Odierno, ji bo Pêşmergeyên ku di şerê li dij DAIŞ'ê de jiyana xwe ji dest dane sersaxî ji Mesûd Barzanî û hemû malbatên Pêşmergeyan xwest û got: "Ev sekna wan a bawerdar teqez wê serkeftinê pêk bîne."

Di hevdîtinê de Mesûd Barzanî jî da zanîn ku di vî şerî de awirên herkesî li ser aliyê leşkerî tûj bûye û geşedanên siyasî yên piştî vî şerê pêk hatine nayêne dîtin. Di derbarê şerê ku Pêşmerge dimeşîne de jî Barzanî got: "Pêşmerge, di nav bêderfetiyan









û bêyî çekên giran, li dij rêxistina ku çekên herî mezin û xeternak ên du dewletan bi dest xistiye, ji Kobanê heta Celewla, li ser xeteke 1500 km şer dimeşîne." Barzanî grîngiya hevkariya bi dewletên hevpeyman re destnîşan kir û anî ziman ku divê ev hevkarî di asteke bilind de bê kirin. Barzanî got: "DAIŞ' xeteriyeke giştî ye. Divê herkes li dij DAIŞ'ê têbikoşe û divê ne li Iraq û Sûriyeyê û ne ji li tu derî kes piştevaniya DAIŞ'ê neke."

### Komara Çekê alikariya leşkerî dike

Piştî ku DYA û gellek dewletên Ewropî ji bo li dij DAIŞ'ê şer dimeşîne ji Pêşmerge re çek şandin û gellek dewletan jî soza şandina çekan dan, Wezîrê Karê Derve yê Komara Çekê Lubomir Zaoralek jî ragihand ku dewleta wan amade ye ku ji bo Pêşmerge, li gel perwerdehiya leşkeri alîkariya çek û ji bo mexdûrên şer jî alîkariya mirovî bike. Lubomir Zaoralek'ê ku ji bo hin hevdîtinan pêk bîna roja Pêncşema borî hate Hewlêrê bi Serokê Herêma Kurdistan Mesûd Barzanî re hevdîtinekê pêk anî. Piştî hevdîtinê, di derbarê hevdîtinê de meyameke nivîskî hate belavkirin. Di peyamê de hatiye gotin ku Wezîrê Karê Derve yê Komara Çekê, ji Barzanî re ragihandiye ku ew amade ne di warê pêdiviyên leşkerî û şêwirmendiya leşkerî de alîkariya Herêma Kurdistan bikin. Di peyamê de hatiye ragihandin ku Barzanî jî ji bo vê pêşniyara alîkariya Pêşmerge û Herêma Kurdistan spasiyên xwe pêşkêşî Lubomir Zaoralek kirî ye. Barzanî, her wiha pêwîstiya geşedandina pêwendiyên aborî, siyasî û leşkerî yên di navbera Herêma Kurdistan û Komara Çekê destnîşan kirî ye. Di vê hevdîtina ku êvara Pêncşemê pêk hatiye de her wiha ji her du aliyan kesên payebilind jî amade bûne.

### DAIŞ derbên mezin xwar

Di demeke ku gellek geşedanên siyasî têne meşandin de, di eniyên şer de jî şer û pevçûnên mezin rû didin. Tê ragihandin ku di pevçûnên mezin ên li derdora Bendava Mûsilê de, 120 endamên DAIŞ'ê ku di nav wan de Fermandarê Leşkerî yê Giştî yê Herêmê Şêx Dawid jî heye hatine kuştin û nêzîkî 70 meytên endamên DAIŞ'ê ku di nav wan de gellek kesên tirk jî hene, ketine destên Pêşmerge.

### Şer gurr bû

DAIŞ'a ku li Celewla û Sadiye derbên mezin xwar, li herêma Mûsil'ê dest bi êrîşan kir. Hêzên Pêşmerge yên vê herêmê jî bi dijwarî bersiv dan van êrîşên DAIŞ'ê. Li gel bersivdayînê, Pêşmerge, li dij DAIŞ'ê dest bi hin operasyonên berfireh jî kir. Di van operasyonên ku hin ji wan bi hevkariya Artêşa Iraqê têne meşandin de li derdora Qeretepe û Hemrînê pevçûn didomin. Hate ragihandin ku li derdora Bendava Mûsilê DAIŞ'ê hewl daye ku du êrîşên xwekûjî pêk bînin, lê belê Pêşmerge rê nedaye ku ev êrîş bi encam bibin. Her wiha hate ragihandin ku DAIŞ'ê bi maşîneke bombebarkirî hewl daye ku êrîşeke mezin pêk bîne, lê belê Pêşmerge ji vê êrîşê zû haydar bûye û ji dûr ve vê maşînê teqandiye.

Pevçûnên li herêma Kerkûkê jî li Mekteb Xalid, Meryembeg, Mele Ebdula, Riyaz û Til Werdê zêde bûne. Di encama operasyonên vê herêmê de gundên Şêx Seîd, Beyzê, Tepe, Xurmal, Mecîd, Cîbûr û Wamirê ji DAIŞ'ê hatine rizgarkirin û di encamê de gellek endamên DAIŞ'ê hatine kuştin.

Hat ragihandin ku di pevçûnên li qada Diyalayê de jî 59 gund hatine rizgarkirin. Li gor agahiyên ku Fermandarê Pêşmerge Îskender Seyîd Osman ragihand, Pêşmerge, li quntarên Çiyayê Hemrîn ê herêma Diyalayê 59 gundan rizgar kirî ye. Osman got: "Niha Gundê Tolan ê ku em niha lê de, gundê ku dema DAIŞ'ê êrîşî Celewla û Sadiye kir wek biryargeh bikar dihanî ye."

### Yawer: DAIŞ'ê berxwedaneke wiha hêvî nedikir

Berdevkê Wezareta Pêşmerge Cebar Yawer di derbarê eniyên ku bi dijwarî şer rû didin de pirsên BasNûçe'yê bersivand. Yawer piştrast kir ku DAIŞ li herêma Kerkûkê li qadên Mekteb Xalid û hin qadên din êrîşan pêk anî ye, piştî ku Pêşmerge bi tûndî bersiv daye van êrîşan DAIŞ ji bêçarî paşve reviya ye û di encama van pevçûnan de gellek endamên DAIŞ'ê hatine kuştin. Yawer, da zanin ku DAIŞ'ê li herêma Mûsilê jî ji çar aliyan ve êrîşan pêk aniye, lê belê li van deran jî rastî bersiveke tûnd a Pêşmerge hatiye û ev êrîşên DAIŞ'ê hatine şikandin. Yawer da zanîn ku Pêşmerge, li herêma Xaneqîn ev çend roj in dest bi operasyonan kirî ye û di encama van operasyonan de ev herêm bi tevahî ji DAIŞ'ê hatiye paqijkirin.

## Gysi jî li Hewlêrê ye

Di vê navberê de ji alî Partiya Çep a Alman ku di hundur xwe de di derbarê şandina çekan de nîqaşan dike yekem serlêdana Kurdistan pêk hat. Payebilindê Partiya Çep a Alman Gregor Gysi'yê ku ji alî Serokê Herêma Kurdistan Mesûd Barzanî ve hate qebûlkirin, da zanîn ku ji bo Almanya ji Pêşmerge re çekan bişîne ewê xebatên xwe bidomînin. Tê meraqkirin, piştî serdana Gysi, gelo Partiya Çep a ku dijbertiyeke tûnd a polîtîkayên DYA dike, wê helwesta xwe ji nû ve binirxîne yan na.

Di hevdîtina ku li Selehedînê pêk hat de, Gysi slavên Wezîrê Karên Derve yê Almanya Walter Steinmeier û hin rayedarên alman pêşkêşî Barzanî kir û ji ber parastina ezdî, mesîhî û komên din ên etnîkî û olî û her wiha ji ber hewandin û parastina bi sedhezaran kesên ku ji ber xeteriya DAIŞ'ê ji cih û warên xwe bûne, Hikûmeta Herêma Kurdistan û Pêşmerge pîroz kir. Gysi, ji ber ku Herêma Kurdistan di demeke kurt de geşedanên mezin pêk aniye heyraniya xwe anî ziman û got: "Kurd rastî gellek binpêkirinan hatine lê belê êdî xwedî karînin ku bi mafên xwe derkebin ser rûpelên dîrokê.

Barzanî jî di hevdîtinê de ji ber ku silavên Walter Steinmeier û yên rayedarên din ên alman anîye spasiyên xwe pêşkêşî Gregor Gysi kir. Barzanî, balê kêşa ser şerê li herêmê û xeteriya ku ji ber DAIŞ'ê peyda bûye û anî ziman ku Pêşmerge, ji bo DAIŞ'ê ji herêmên ku dagir kiriye derxîne di nav hewldanan de ye û di vê bareyê de wê Pêşmerge bigihîje armanca xwe.

Rojava

# Kouchner û Gysi hatin Cizîrê

Li Rojavayê Kurdistanê û bajarê Kobanê ku ev du mehe e di bin dorpêçê de ye, piştî çûyîna Pêşmerge di navbera hêzên kurd û DAÎŞ de pevçûn her diçe kêm dibe. Hêzên kurd ku bi çekên giran êrîşên DAÎŞ'ê kirin piraniya bajêr rizgar kirin. Li bajarê ku vegera sîvîlan jî dest pê kirye niha bêdengiyek heye. DAÎŞ li beriyê bi êrîşê hêzên kurd, li esman de jî bi êrîşên balafirên koalîsyona hevpeymanê ketiye rewşek dijwar. Li gor agahiyên tê 'serkeftina kesinî' di demek nêzîk de were bidestxistin.

Her çendî navenda bajêr bi tevahî nehatibe rizgarkirin jî, li gor agahiyên li eniya şer tê ev di demek kin de pêk were bê. Piştî ku Pêşmerge derbasê Kobanê bûn sewqiyata çek û cebilxane berdewam e û şandina yekîneyek nû ya Pêşmerge di rojevê de ye.

Li Kobanê rewş her diçe baştir dibe lê DAÎŞ li hewl dide ku eniyek nû germ bike. Li bajarê Hesekê ku girêdayî Kantona Kobanê ye di navbera rejîm û DAÎŞ'ê de şer dest pê kir. Piştî ku rejîmê baregehê DAÎŞ'ê bombebaran kir li ser rêya Ebiyet pevçûn derket. Her çiqas şer niha li 5 kîlometre dûrê bajêr bidome jî xetereya ku bipeke nav bajêr jî heye.

**Li Rojava hevdîtinên dîplomatîk**

Li eniya şer ku ew qewimîn pêk tên, di warê dîplomatîk de jî pêşveçûnên cûrbecûr hene. Wezîrê Berê yê Karê Derve yê Fransayê Bernard Kouchner û Parlementerê Partiya Çep yê Almanyayê Gregor Gsiy serdana Rojava kirin. Kouchner û Gsiy, bi berpirsiyarên Rojava re rewşa Kobanê û qewimînên dawî nirxandin.

Wezîrê Berê yê Karê Derve yê Fransayê Bernard Kouchner, serdana Kantona Cizîrê ya Rojava kir û bi serokê kantonê Ekrem Huso re û bi berpirsiyarên din re çend hevdîtin pêk anî. Kouchner li kêleka berpirsiyaran serdana hin yekîneyên parastinê jî kir. Kouchner got ku, xwestiye rewşa dawî ya Rojava ji nêz ve bibîne û welatê xwe qanih bike bo alîkariya Rojava bike hatiye vir.

Parlementerê Partiya Çep yê Almanyayê Gregor Gsiy jî serdana Kantona Cizîrê kir û bi serokê kantonê Ekren Huso û alîkarê wî Huseyîn Azam re hevdîtinek pêk anî. Di hevdîtinê de rewşa dawî ya Kobanê û êrîşên DAÎŞ'ê hat axaftin. Parlementerê Partiya Çep yê Almanyayê Gsiy, di rojên pêş de serdana Serokê Herêma Kurdistanê Mesud Barzanî kiribû.





Heyeta Kantona Efrînê bi berpirsiyarên PE hevdîtin pêk anî

Heyeta Kantona Efrînê di bin serokatiya Hêvî Mustefa bi perpirsiyarên Parlementoya Ewrûpayê (PE)re hevdîtin pêk anî.

Ligel Mustefa Wezîrê Karê Derve Sulêman Cafer, Alîkarê Wezîrê Karê Derve Cîhan Mihemed, Rêvebirê Komîteya Rêvebir ya PYD li Ewrûpa Îbrahîm Îbrahîm cîh girtin. Heyet bi Serokê Komîsyona Karê Derve yê PE'ê Elmar Brok, Lijneya Şiwirmendiyê ya Serokatiya EP'ê, Serokê Koma Çep ya PE'ê Gaby Zimmer, Hevseroka Koma Keskan ya PE'ê Rebecca Harms û çend kesên din re hevdîtin pêk anî.

Di hevdîtina de; bandora ambargoya li ser Kantona Efrînê, modela ku li Kantona pêk hatî û têkiliyên di navbera netewên din de û xetereya li ser kantonan de hat axaftin û berpirsiyarên PE'ê agahî ji heyetê stend.

**Li Heskê şer di navbera rejîm û DAÎŞ'ê de ye**

Serokê Perlementoya Yasadanînê ya Kantona Cizîrê Hekim Xalo, derbarê şerê li Hesekê de got ku, şer di navbera rejîm û DAÎŞ'ê de diqewime. Xalo: "Niha şer di navbera rejîm û DAÎŞ'ê de ye. Pevçûn nêzikî 10-15 kîlometre dûrê bajêr e. Yek caran li navenda bajêr bombe diteqin lê ev tiştek xwezayî ye di nav şer de. Nîvê navenda bajarê Hesekê di destê kurdan de ye nîvê wî jî di destê rejîmê de ye. Li navendê hezkiriyê DAÎŞ'ê pir in lê derfetên wana ku bikaribin şer bikin nîne."

Xalo, derbarê serdanên heyetê Ewrûpayê de jî axivî û got ku di warê dîplomatîk de ev serdan girîng in. Xalo: "Heyetên ku hatin gotin ku em bo alîkariya Rojava hatine û ku vegerin welatê xwe wek dostên kurdan xebatên xwe bidomînin. Gotin ku em ê behsa êrîşên DAÎŞ'ê, ambargoya aborî û astengiyên din bikin. Ji ber ku evana erkdar nebûn bi awayek şênber tu sozek nehat dayîn."

Xalo diyar kir ku, bo derbasbûna Pêşmerge heta niha tu agahî nehatiye destê wan lê soza ku Rêvebriya Herima Kurdistanê daye ger alîkarî pêwîst be ew dikarin Pêşmerge bişînin ji bo wan senet e û binê wî xêz kir ku ger hewcedarî hebe bawer dikin ku Pêşmerge bê şandin.

**'Li Kobanê hê xetere neqediya ye'**

Rêveberê Kantona Kobanê Ahmedê Mistê diyar kir ku, li Kobanê moralê hêzên kurd di cîh de ye, ji zû de windayiyê wan çênebûye û ji nîvê zêdetir navenda bajêr girtine destê xwe. Mistê di berdewamiya axaftina xwe de balê kişand xetereya hê xilas nebûye û waha got: "Em nikarin ku bêjin xetere xilas bûye. Heta ku xetere bi tevayî xilas nebe em nikarin bikevin rehetiyê. Bi vegera sîvîlan re serjimara Kobanê zêde dibe. Bo ewlekariya sîvîlan em xebatên xwe zêdetir dikin. Em ji hemû dinyayê û ji kurdan dixwazin ku heta xetere xilas nebe alîkariyê xwe bidomînin."

Mistê diyar kir ku, guherîna yekîneyên Pêşmerge ji bo wan ne ne tu kêmasî ye û şerê mil bi mil yê YPG û Pêşmerge wan kêfxweş dike û ku pêwîstî bibe YPG jî li Başûrê kurdistanê tevlî şer bibin.

### Heta ku hewcedarî hebe Pêşmerge li Kobanê be

Fermandarê yekîneya Pêşmergeyên li Kobanê Ahmed Gerdî diyar kir ku, niha li Kobanê rewş aram e û pêşveçûna hêzên kurd berdewam dike. Gerdî, di berdewamiya axaftina xwe de got ku bajar hê bi tevahî nehatî paqişkirin lê ev nêzik e.

Gerdî piştrast kir ku yekîneya Pêşmerge ya niha li Kobanê'ye vegere Başûrê Kurdstanê û yekîneyek din were cîhê wan û ev yekîne xwediyê heman çek û techîzatan a û bi reheti bikaribe cîhê wan tije bike. Gerdî waha berdewamî da axaftina xwe: "Di navbera yekîneyên Pêşmerge de tu cudahî nîn e. Fermandariya em girêdayî wî ne biryar da ku em cîhê xwe biguherînin. Yekîneya ku were Kobanê biparêze."

Gerdî got ku, hê ne diyar e ku ev guherîn kengê bê kirin û derbarê pirsa me ya Pêşmerge nû ku werin vir astengî nejîn de waha bersiv da: "Pêşmerge di her şert û mercê de şer kirî ye. Pêşmergê ku werin bi heman çek û techîzatê wan hebe ji ber vê jî tiştek ku xetere be nîne."





Li Dêrsimê ezmûna samîmiyetê

# Kêşe heye, çareserî nîn e!

Kêşeya Dêrsimê ya bi çûyîna Davûtoglû ya Dêrsimê careke din hatî rojevê ne tenê derbarê komkujiya ku di 1938'an de pêk hatî û encamên ku wê ew derxistî holê de ne.

Digel zîzdariyên derbarê komkujiya dêrsimê û derxistina holê ya encamên wê meseleya Elewitiyê jî li holê bê xwedî maye. Retorîka Hikûmeta AKP'ê ya derbarê Elewitiyê û siyaseta ku ew bi navê "Çareseriya Elewitiyê" bi rêve dibe ji alî bawermendên vê baweriyê û nûnerên wan ve him kêm û him jî bi kêşe tên dîtin.

Hikûmet dibêje dersên dînî yek parçe ne û dê ew bi vî awayî bidomin. Helwesta wan a derbarê Elewitiyê de ev e: Elewitî xêji dersên heyî wekî din bi ti awayî nayê dayîn.

Eger çend ûnîteyên din ji bo mifredata heyî bên zêdekirin wê kêşe çareser bibe. Dê Malên Cemê yan bi weqfeke ku dê bê avakirin ve bên girêdan an di bin bana beşa karên diyanetê de û bi vir ve bêne girêdan. Yan jî dê bi beşeke nû ya ku bi serokwezîrtiyê ve girêdayiye ve wê bê girêdan. Dê Kalik(dede) bi riya enstituyeke ku dê ji bo Elewitê bê vekirin bên perwerdekirin û ew dê ji wan enstituyan destûrnameyan werbigirin û li Malên Cemê weke kalikên karmend ên bi miaş bên peywirdarkirin.





**Parlamenterê AKP'ê yê berê Reha Çamûroglû:**

### Navê Zanîngeha Dêrsimê ji alî AKP'ê ve hat redkirin

Parlamenterê AKP'ê yê berê Reha Çamûroglû Komkujiya Dêrsimê weke "rûdaneke cuda" dinirxîne. Çamûroglû, êşa kesên ku bav û kalên xwe li Dêrsimê wendakirî û daxwaza elewiyan ji hev cuda dibîne. Çamûroglû got: "Dewlet dikare ji ber vê yekê lêborîna xwe bixwaze. Divê bixwaze jî. Ji ber ku meseleyeke ku dikare bi rêgezine din bê çareserkirin weke kesê çakûçeki dike dest xwe û her tiştî wek bizmar dibîne hate çareserkirin. Ji ber vê yekê divê dewlet lêborînê bixwaze. Kesên ku li dêrsimê hatî qetilkirin ji ber Elewitiyê nehatin qetilkirin. Eger ku em li vir qala elewitiyê dikin... Veguhertina navê zanîngehê bo Zanîngeha Mûnzûrê ji bo meseleya Dêrsimê gaveke baş e. Lê ew ne ji bo elewitiyê ye. Ti kesî nedigot ku em leşkergehê bikin mûze. Kêşe ev e: AKP li dewsa gavavêtina bo kêşeya elewitiyê gavên bo hilbijartinan diavêje."

**Ergîn Dogrû:** **Wî Tûncelî dît lê nexwest ku Dêrsimê bibîne**

Hevserokê HDP'ya Dêrsimê Ergîn Dogrû diyar kir ku ew ji serdana Dawûtoglû ya Dêrsimê ne bi hêvî ne û got: "Nasnameya îdeolojîk ya Serokwezîr û neguhertina ferasetа Dêrsimê ya dewletê. Dogrû bal kişand ser giringdîtina qalkirina derbarê derên giring ya dawûtoglû û got: "Serdana Davutoğlu û axaftina wî dexist holê ku em çiqas mafdar bûne. Rave û pratîkên wî yên di seredanê de diyar kirin ku ew hîn jî nikarin Dêrsimê qebûl bikin. Me jî ev yeka wek "Ew Tûnceliyê dibîne lê. Nexwest ku Dêrsimê bibîne" formûlîze kir.

Ergîn got: "Divê Elewitî di bin ewlehiya makezagonê keve. Ev jî ne bes e. Divê pêşdaraziyên civakan jî bên şikandin. Eger ku nêrînên ne baş ên di pirtûkên dersan de û yên di bûrokrasiya dewletê de bên rêjkirin wê elewî xwe wek hemwelatiyên vê dewletê bibînin. Wê hêsta hebûnê bi wan re çêbibe. Lê belê him bi zorê dê bo zarokan dersên dînî bên dayîn him di pirtûkên dersan de heqaret li bên kirin nabe."

**Sînan Yerlîkaya:** **Ez bawerdikim ku maf bên îadekirin**

Parlamenterê CHP'ê yê berê yê Dêrsimê Sînan Yerlîkaya serdana Davutoğlu ya Cemxaneya li Dêrsimê weke gaveke pêşketî şirove kir û got: "Gotina wî ya 'ez hatim destûrê werbigirim' rûdaneke baş e." Yerlîkaya diyar kir ku bilêvkirina Davutoğlu ya çareserkirina Dêrsim û Elewitiyê pêşketineke erênî ye û wisa pê de çû: "Em dê piştî encamên van xebatan rêberên Elewiyan jî bînin ba hev û xala dawiyê lê deyînin. Yanî xebatên ku hîn didomin dê di demên pêş de wek rapor bên herhevkirin û dê him ji alî dewletê û him jî ji alî rêberên qinyatê ve ji bo gel bên daxûyandin." Yerlîkaya diyar kir ku him bilêvkirina komkujiya Dêrsimê û lêborînxwestina ji ber vê yekê û him jî avakirina komisyoneke ji bo Dêrsimê gavên erênî ne.



## Li Dêrsimê çi got?

Komara Tirk piştî tefandina Serhildana Şêx Seîd û ya Araradê berê xwe da Dêrsimê. Li Kurdistanê cîhê yegane ku dagirker neketibûnê Dêrsîm bû. Ber bi salên 1926'an Kemalîstan ji bo dorpêçan û xapandina eşîrên Dêrsîmê amadekariyan kirin. Bi rêbaz û hîleyan di nav eşîran de nakokî derdixistin û wan berî hevûdû didan. Herwiha duxwestin ku li çend hereman meqerên leşkerî deynin û çekên eşîran ji wan bistînin. Di vê navberê de car cara herdû alî ji bo hevûdû bipîvin û pîlanên hevûdû fêhmbikin, şerên biçûk derdixistin.

Kemalistan pîlana 'îslahkirina Dêrsîmê' hiştin heta sala 1936'an. Di vê salê de Mustafa Kemal di axaftinekî meclîsê de Dêrsîmê wek 'kînor' binav dikir û fermana birrîna vê kînorê dida. Li ser vê yekê Artêşa Tirk ket nav tevgerê û dor li Dêrsîmê girt. Eşîrên Dêrsîmê ku serokatiya wan Seyîd Riza dikir, daxwazên teslîmbûnê redkirin. General Abdullah Alpdoğan ji Dêrsîmiyan 200 hezar tifing duxwest. Di Bihara 1937'an de êrişa artêşê destpêkir. Hefteyên pêşîn balafiran li ser eşîran bombe barandin û paşê leşker ketin heremê. Heta meha Îlonê şer bêrawestan domkir. Artêşê ji ber ku li hember şerwanan berxwenedida, berê xwe didan sivîlan. Bi dehan gund tevî rûniştvanan hatin şewitandin. Li Dêrsîmê tiştên ku tevdigeriya, dihat gullebarankirin û bi hezaran jin û zarok û pîr hatin kuştin.

# Nêweşiya ciniyan

Necîbe Kırmızıgül



Wexto ke wendoxî biwînîyê sernameyê nê nuşteyî ra do vajê qey nê nuşteyî de qalê nêweşîya cinîyanê winîhalan (hemîleyan) beno. Hema ney! Ez qalê a nêweşîye nêkena. Bi mi, nêweşîya ke ez do qalê ci bikera hîna giran a, hîna derg a, tena cinîyanê winîhalan de ney, heme cinîyan de esta. Winî aseno ke hema daruyê na nêweşîye nêvînîyayo. Qe kêna qe cinî qe ciwane qe pîr qe wenda qe nêwenda ferq nêkeno, na nêweşîye se ra newayê cinîyan de esta. Tena cinîyandê ma kirdan de ney, cinîyanê şaranê bînan de zî esta. Ez nika çimanê şima ra wanena, şima zaf meraq kerd, na çitêl babet nêweşî ya ke! Aha, ez ha vana: Meraqdarîye û dedîqodî!

Mi çi rê meraqdarîye rê va nêweşî, ez şima rê îzah bikera. Her kesî de meraq esto, no normal o, xora çinêbîyayîşê meraqî normal nîyo. Ma bi meraq a çîyan musenê, kokê musayîşî de meraq esto. La ma naye zî zanê ke ê her çî zafê ci zirar o. Û çîyê ke meraq benê, ê zî muhîm ê. Çîyê ke faydeyê xo merdimî rê çin bo, merdimî aver nêbero meraqkerdişê ê çî zirar o, demên ra dima merdimî de beno nêweşî. Ez bêra nêweşîda cinîyan ser, zaf cayan de balê mi anto, cinî qisey nêkerê se nêşenê vinderê û cayê ke gereka tede qisey nêbo uca de zî nêşenê fekê xo tepîşê. Yew qala maya mi esta, tim vana, “Şima ziwanê cinîyan cikerê zî ê do fina qisey bikerê.”

Maya mi yewna meselaya kilmeke zî vate: “Dewên de şewra rew di cinî dewarê xo benê kenê tewirdê dewarê dewe kenê û teberê dewe de kemerên ser o ronişenê. Herî ra dekewenê kurrî ra vijîyenê. No mabên de nêzanê wext senî ravêrd. Hend wînîyenê ke dewar ho yeno keye. A yewe vana, no dewar çi rê yeno, hema newe gawanî berd! Her di marda nê gawanî n... Dewarî weş nêçiraneno, rew ano keye. A bîne haydar bena û vana, lê lê gawanî rê nengî meçîne, bîyo şan şan, biewnî roj ho şino awan.”

Mi vatê na maya mi çi rê wina vana. Nê demandê peyênan de mi bala xo da cinîyan ser, heqeten seke maya mi vana, cinî qet daymiş nêbenê. Cayê ke tede kes nêşeno qisey bikero uca qisey kenê. Şima vajê ke cayê qe tede qisey nêbenê kotî yê? Ortedê kuçeyan, cadeyan, bazaran... Cayê hîna muhîmî estê; camî, mekteb, ezayî... Ez nika şima rê nînan îzah bikera.

Mi Sêwregi de tewir-tewir mekteb û dersxaneyan de mamostatî kerde. Coy ra mi tewir-tewir merdimî zî şinasnayî. Sewbîna zî ez tim teber de ya. Sêwregi de zî heme yewbînan şinasnenê, merdimê ke ez înan nêşinasnî zî ê mi şinasnenê. Wexto ke ez şina çarşî ez vana boka ray ra yewdo şinasî nêvîna, hela mevajên cinî bo! Xora emrîyanan ra di tene pîrî estê, her di zî kirdas ê, keyeyê her yewe kiştênda cadeyî de yo. Keyeyê ma ortedê înan de maneno. Ez şewra vana boka ê teber a nêbê la tim zî teber a yê. A yewe verê kêberî deruyena, a bîne zî zimistan-hamnan, tim kêberî ver de ronişena, kam ravêreno, kam se keno, bala aye ha miletî ser o. Eke mi nêvînê! Ella razî bo sifte mi rê duayî kenê la dima dest bi persan kenê. A yewe vana, “Qîza min, te mekteb qazanmîş nêkir, ti dixwînî, ti bûyî uyretmen, ti kîjan mektebê da yî, qadroya te hat?” Ez zî heme persan de ci rê vana, “Herê, herê, herê...” A bîne dimilî vana, “Kêna mi, Ella aqil û fehm bido to, boka ti qazanmîş kerê. To qadro girot boka!” Ez nêzana ke çi ciwab bida ci, ez vaja “E, mi qadro girewt” zûr beno. Ez vaja “Ney”, na rey a do dest pêbikero aqil bido. Mi xo emrîyanan ra reyna tepîya na rey çarşî de, ray ra tayên cinî raştê mi yenê, ê mi şinasnenê, mi zî ê dîyê hema ez nêzana çi kes ê. Persa înan a siftekêne wina ya: “Tîya şina kotî?” Ez vana, “Ez şina çarşî.” A do vaja, “Şina çarşî se kena?” Ez vana “Tayên karê mi esto.” A do vaja, “Karê to çiçî yo?” Ez vana, “ Mi rê tayên çî lazim o.” A do vaja, “To rê çiçî lazim o?” Ez huyena û vana, “Belkî nêvajîyeno.”

No fasil qedîya, na rey nê persî dest pêkenê: “Şima birayê xo nêzewicnenê, şima hewna waya to nêdaya, waya to ya zewicnaye çend qeçê ci estê, çend lajekî û kênekî?...” Nê tena ê pers ê ke nika yenê mi vîr, hema rêza persan zaf derg a. Nê persî heme ortedê cadeyî de deqayên mîyan de pers benê.

Yew fine ez wînîyena ke ortedê cadeyî de û mabênê qehwexaneyan de cinîyan fek nayo yewbînan ver a, qe wesayît ravêreno zî ê nêeşnawenê. Çike suhbetê înan heme çî ra muhîm o, yewo ke nêzano ê kenê dinya bireynê.

Belkî ez do vêşî derg bikera la ez qayil a nê persanê cinîyan zî vaja. Bi mi, nê persî zîhnîyetê cinîyanê ma zî musnenê ma. Eke laj yan kênaya yewe ezeb bo yan zî newe bizewicîyê, nê persan persenê: “Şima hema lajek nêzewicnayo, şima xo rê veyve nêgeyrenê, şima yê vanê qey wa kal bo? Wext pey ra nîno, lajekî bizewicnê.” Eke zewicnayo, na rey nê persî dest pêkenê: “Veyva şima tewir de, veyva senîn a? Boka şima pê kenê, boka exlaqê ci rind o?” Eke veyve çar-panc mengî yo ke arda, “Qeçekê veyve çin o, çi rê çin o, şima berde tixtor, eceba veyve ra yo yan lajekî ra yo?” Eke qeçek bîyo, “Derguşa şima laj o, kêna ya? Eke keyna bo, vanê “Wax wax, kaşka laj bîyaye!” Nê persî zî standard ê ha! Ez şêna şima persanê sey nînan hema zaf bihûmara la qandê kuçaeyn û cadeyan hende nimuneyî bes ê. Ez bêra bazaran ser. Ez nêşina bazar la ge-ge qewmîyeno, ez mecbur şina. Bazar xora sixletî ya, kerr nêşeno korî û qeçekê ke erebaya destan a geyrenê, ê zî kewnê mîyan, o wext kes nêşeno bazar de game çekero. Mevajên ke yew fine wesayîtî kewnê mîyan, merdim nêşeno mîyan ra vejîyo. Nê hengameyî mîyan de kes wînîyeno ke cinîyan fek nayo yewbînan vera, hê qisey kenê. Mi tim meraq kerde, mi vatê eceba a sixletîye mîyan de çiçî yo ke hende muhîm o, yeno qisey kerdene. Rojên mi dezgeyî ser o sebze weçînayê, hema mi pey de di cinîyan pê dî, halhewalê yewbînan pers kerd tepîya, a yewe va “Wa qisa ma tîya de bimano, seke to mi ra nêaşnawit...” Hewna qala xo nêqedînabî ke a bîne va, “Wa lingda to bin de bo, wayê, mi ra qisa nêvijêna!” A bîne dewam kerd, “Ti zana, veyva apdê mêrdekê ma kewta şarî dima, hem zî vanê o ke kewta dima, zewicîyaye yo.” A bîne lewê xo gaz kerd û va, “Wuşşş, wîî dayê, ma rê! Kuç û kemerî do bivarê ma ser! Ella kesî şaş nêkero! Hema ez veyva înan şinasnena, ez kênekîya aye zana, qet saxleme nêbî, zaf lajî aye dima geyrayî...” Karê mi qedîya mi dewamê ci goştarî nêkerd.

Keyeyan de cinî yenê yewbînan het û nê qalan kenê, la keye de normal o. Hema ortedê bazarî de lingan ser o hezar qalî kenê, çi faydeyê nê qalan înan rê bî, mi fehm nêkerd! No şekl a bazar de kes zaf raştê cinîyan yeno.

Mi vatê qey na meraqdarîye tena cinîyanê ma kirdan de esta, la ney! Zonguldak de ez şîyêne bazar, yew embaze va “Mi rê bazar ra findiqan bîya.” Bazaranê Zonguldakî de cinî çî roşenê. Ez geyraya mi cayên de findiqî dî, mi kîloyê ci pers kerd û mi va, “Nê findiqî rind ê? Ez hend fehm nêkena.” Cinîke va, “Çi rê ti tîya ra nîya?” Mi va, “Ney!” Va, “Ti kotî ra ya?” Mi va, “Ez Riha ra ya.” Va, “Ti tîya se kena?” Mi va, “Ez wendekar a.” Va, “Ti çi wanena?” Mi va, “Ez formasyon gêna.” Va, “Formasyon çi yo?” Mi va, “Sey dersa mamostatî yo.”



## Li Amedê dêreke bê oldar: Surp Giragos

Dêra Sûrp Giragos ku beriya çend salan weke xana xerabe di nav kuçeyên Amedê de li ber têkçûnê bû, bi hevkariya Şaredariya Amedê û Cemaeta Ermenî hate restorekirin û ji nû ve derkete ser rûpelên dîrokê. Piştî ku li gor mîmariya xwe ya resen hate restorekirin, bi îhtîşama xwe çavên mirov qemûşand û bêhempayiya xwe li dîrokê qêriya. Lê belê li gel vê bêhempayiya xwe bi arîşeyeke mezin re rû bi rû ye, lewre peywirdarê wê yê olî tune ye û li bende ye ku peywirdarekî olî bê û dest bi ayînên olî yên domdar bike.

# Dêrên Tirkiye‘yê bê xiristiyan man!

Mistefa Pola



Dêra Surp Giragos a ermeniyan ku yek ji avahiyên dîrokî yên ku Amedê dixemilînin e, piştî restorekirinê ji nû ve ji xizmeta ayînê re amade bû, lê belê ji ber ku peywirdarê wê yê olî tune ye, li dêrê xizmeta ayînan pêk nayê. Ji bo vê arîşeyê me bi Serokê Weqfa Dêra Ermenî ya Sûrp Giragos Ergün Ayık re hevdîtinekê pêk anî. Ergün Ayık, anî ziman ku li Tirkiyeyê nebûna peywirdarên olî yên dêran arîşeyeke giştî ye, ji ber ku hemû dibistanên ku perwerdehiya gihîştina oldaran pêk tînin hatine girtin êdî ne pêkan e ku li Tirkiyeyê peywirdarên olî bêne perwerdekirin. Ayık da zanîn ku tenê li Qudus û Ermenistanê derfetên perwerdehiya oldaran heye û oldar piştî 5 salan perwerde dibin dikarin wek peywirdarên olî dest bi rêvebirina ayînan bikin, lê ji ber ku şert û mercên perwerdekirinê pir zehmet in, ev yek bala ciwanan nakêşîne. Ayık diyar kir ku li gellek dêrên Stenbolê jî ev arîşe hene û got: “Em dixwazin kesekî ku Amedê û herêma Amedê baş nas dike û qet nebe bi kurdî û îngilîzî zane da ku dikaribe têkiliyan bi mêvanên dêrê re deyîne li Dêra Sûrp Giragos bikin peywirdarê olî. Ji ber vê yekê, heta em kesekî bi vê qabiliyetê bibînin emê hewl bidin ku carinan ji Stenbolê peywirdarên olî bînin vê derê û ayînên xwe pêk bînin.

Ergün Ayık da zanîn ku ew bi du kesên ku wê dikaribin vê peywirê bê kêmasî pêk bînin re di têkiliyê de ne, lê ji ber bêderfetiyên aborî ew niha nikarin bi wan re peymanekî çêbikin, lêwre divê ew pêdiviyên wan ên jiyanê bi cih bînin. Di derbarê hejmara kesên ku ji bo ayînê têne dêrê de jî Ayık, da zanîn ku li Amedê zêde ermenî nemane, lê gellek ermeniyên ku dûre misliman bûne, têne dêrê û dixwazin beşdarî ayînan bibin û eger zanibin wê ayînên dêrê domdar bin ewê jî bi domdarî beşdarî ayînan bibin. Di derbarê têkiliya dewletê ya bi wan re jî Ayık diyar kir ku dewlet, bi ser Diyanetê ve pere dide melayan û bi vî awayî mela dikarin debara xwe bikin, lê tu alîkariyeke aborî nagihîje keşe yan jî peywirdarên olî yên Krîstiyan. Ayık da zanîn ku dema cemaet wek hejmar pir be ev arîşe çênabe lê dema ku weke Amedê cemaet piçûk be ev arîşe xwe dide der.





Li ser restorasyona Dêrê jî Serokê Weqfa Dêra Ermenî Sûrp Giragos Ergün Ayık anî ziman ku restorasyona dêrê ji % 100 li gor reseniya xwe hatiye kirin û got: “Projeya restorasyona dêrê piştî erêkirina Saziya Abîdeyan pêk hat, ji ber vê yekê li gor reseniya xwe hatiye restorekirin. Ayık got: “Ji ber ku li gor reseniya xwe hate restorekirin, dêra me di pêşbirka restorasyona berhemên dîrokî ya li Ermenistanê de bû yekemîn û di pêşbirka Odeya Mîmaran a Tirkiye de jî bû duyemîn. Bedêla restorekirina dêra me 5.5 milyon TL girt, ji % 20 ji alî Şaredariya Amedê ve û yê mayî jî ji alî cemaeta me ve hate terxandin. Dewletê tu alîkarî bi me nekir û bi ser de jî baca KDV’ê jî ji me stend.” Ergun Ayık da zanîn ku di destpêkê de wan serî li Wezareta Çandê jî daye, wezaretê ji wan re gotiye emê dêrê restore bikin lê belê emê dêrê ji we bistînin, bikin mûzexane û ji ber vê yekê wan vê pêşniyarê qebûl nekirî ye. Ergün Ayık got: Di destpêka salên 1900’an de li herêmê nêzîkî 2 hezar dêr hebûn û niha tenê çend dêr hene ku dikarin ayînên olî pêk bînin û ger ku me vê pêşniyarê erê kiribûya me yê nekaribûya ew wek dêr bikar bihaniya.”

**Dêr bo xizmetê hate restorekirin lê ji ber ku pêywirdar nîn in her tim vala ye.**

Di derbarê taybetiyên Dêra Sûrp Giragos de jî Ergün Ayık diyar kir ku ev dêr mezintirîn dêra Rojhilata Navîn e û bi mîmariya xwe ya bi kevirên reş ên herêma Amedê jî xwedî taybetiyeke resen e. Ayık got: “Ji bo mirov li Dêra Axtermanê ayîneke olî pêk bîne divê mirov ji berpirsên dewletê yên herêmê destûr bistîne lê belê li dêra me arîşeyeke wisa tune ye. Her kesên Krîstiyan, her gav dikarin bê dêrê û ayînên xwe yên olî bi cih bînin. Şaredarî û gelê herêmê ji vekirina dêrê pir kêfxweş in. Vekirina dêrê hem ji bo Şaredariya Amedê û hem jî ji bo dewletê di qada navneteweyî de cihê prestîjê ye.”

Li ser zêdebûna serdanên dêrê jî Ergün Ayık da zanîn ku dêra Sûrp Giragos a Ermenî, dêra herî bi nav û deng a cîhanê ye. Ayık got: “Ji herêmê, ji Turkiye û ji cîhanê, bi deh hezaran kes serdana dêrê dikin. ermenî û bi taybetî jî ermeniyên ku misliman bûne dêrê meraq dikin û serdana dêrê dikin.”

Abdulhekim Günaydın

## Serokê Partiya Pêşverû Hemîdê Hecî Derwêş

# Hatina Pêşmerge cî hê şanaziyê ye

Serokê Partiya Demakrat a Pêşverû li Sûriyê Hemîdê Hecî Derwêş da zanîn ku dem hatiye ku kurd êdî bo azadiya xwe tenê tevbigerin û diktatoriya tirk, ereb û heta ya navxweyî jî qebûl nekin. Derwêş di derheqê temenê xwe yê dirêj, rewşa siyaseta Rojava û asta dawîn de pirsên me bersivandin.

Li rojavayê Kurdistanê van çend salên dawîn guherînên mezin pêk hatin. Piştî êrişa rêxistina DAIŞ'ê li ser Kurdistanê, hem rojava û hem jî başûrê welêt bûne yekemîn mijar li çapemeniya cîhanê.

Rojavayê Kurdistanê piştî hilweşîna imperetoriya Osmanî bû hêlîn û stargeha tevger, rêxistin û kesên siyasî. Ji her çar parçeyên Kurdistanê şêx, axa, binemal hwd. kar û xebatên xwe yên siyasî, çandî û rewşenbîrî li wir meşandin. Di warê berhemdayînê û eqliyetê de gelekî bipêş ket. Ew bîr û ramanên li wir dipijiyan li seranserê Kurdistanê belav bûne. Rojavayê Kurdistanê wekî navenda pêşketina şaristaniya sedsala dawîn ya kurdan kar û xebatên xwe kirin. Kurd şiyar dibûn û pê dihisiyan ku ne bi yekdengiyê be mafên xwe yênsiruştî bidest naxin û tim dê bibin mêtingeha dagirkeran.

Li wir kurdan yekemîn partiya xwe di sala 1957'an de bi pêşengiya Osman Sebrî, Nûreddîn Zaza, Hemîdê Hecî Derwêş û hin kesên din ava kir. Ji pêşengên wê demê kêm kes niha dijîn. Yek ji wan jî Hemîdê Hecî Derwêşe ku niha Serokê Partiya Demokrata Pêşverû ya Kurd li Sûriyê ye.

Min jî birêz Derwêş derheqê rojevê de pirs kirin û wî jî bersiv dan

**Hemîdê Hecî Derwêş kengê û çawa tevlî rêxistinên siyasî û neteweyî bûye?**

Sala 1954'an. Wê demê ez dora 20 salî bûm û ji bo xwendina zanîngehê çûbûme Şamê.Ez û sê pismamên xwe bûn.

Li wêderê me kesên wekî Rewşen Bedirxan û Osman Sebrî nas kirin. Hêdî hêdî têkiliyên me bi wê derdorê re xweş dibûn. Piştî xweşbûna têkiliyan, me Osman Sebrî û hinek hevalên din komeleyek bi navê "Komeleya Vejîna Çanda Kurdî" avakir. Di nava salêkê de me çend pirtûkên weke Derdê Me, Bahoz a Osman Sebrî, Elîlfbêya Kurdî ya Celadet û Kamuran Bedîrxan, Kozmopolitizm a Îsa Zebîhî û pirtûka Rewşen Bedîrxan ya bi navê Dîroka Nivîskarên Kurd çapkirin. Ji hêla aborî ve rewşa me gelekî baş bû. Paşî Apo Osman Sebrî got "di fikra min de avakirina partiyekê heye, ma tu nabêje çi, tu yê bibe arîkar" min jî got dibe û me biryar da. Sala 1956'an de ez û pismamên xwe, Osman Sebrî û Hemze Newêran ku ji xelkê Wêranşarê bu me partî avakir.

**Wekîdin kî hebû?**

Salek şûnde hinek hevalên din wekî Reşîd Hemo,Mihemed Elî Xoce,Xelîl Mihemed, Şewket Henan hwd. ji Çiyayê Kurd (derdora Efrîn) ku bi partiya komunîst re bûn ji wan veqetiyan û hatin tevlî partiya me bûn. Bi hatina van hevalan roja 14ê Hezîrana 1957'an bi fermî me Partiya Demokratî Kurdî(PDK) avakir. Jixwe Dr.Nûreddîn Zaza û Şêx Mihemed Îsa berê jî em tevde bûn.Piştî damezrandina partiyê,Kurd li Sûriyê zane û şiyarbûn, doza mafên xwe yê neteweyî û rewşenbîrî dikirin. Nûreddîn Zaza di pêşketina partiyê de rolekê mezin dilîst.Lê mixabin rejîma Bees û Muxaberatê nehişt em xebatên xwe dom bikin û sala 1960'î rêvebir û gelek endamên partiyê girtin.

**Hun dikarin hinekî behsa Nûreddîn Zaza bikin?**

Li Rojhilata Navîn, çi Kurd û çi Ereb min gelek siyasetmedarên wekî Ekrem Horanî, Xalid Begdaş, Hisnî Berazî hwd. dîtin. Wê demê yên bi nav û deng ev bûn. Tu kes ji wan nedigihiştin zanebûna Nûreddîn Zaza. Kurdên Bakûr û Rojava sî salî jî bixebitin nikarin rêberekî wekî Nûreddîn Zaza bigihînin. Lê Kurd bêwefa ne xwediyê xwe nasnakin. Em çi bikin sebebê têkçûna kurdan jî ev e.

**Wekî tê zanîn piştî avakirina partiyê di nav Osman Sebrî û Nûreddîn Zaza de arîşe derket sebeba vê arîşê û dûbendiyê çibû?**

Gelek sebebên wê hebûn, ya sereke jî bandora kesên ji derva li ser partiyê û çepitî bû.Partiya Bees û Mûxaberat tevdanî dikirin.

**Hun niha serokê Partiya Demokrata Pêşverû ya Kurd li Sûriyê ne, kar û xebatên we çawa dimeşin. Hun li Rojavayê Kurdistanê ji sedî çiqasî temsîl dikin?**

Em çiqasî temsîl dikin nizanim, lê dikarim vê ji we re bêjim. Partiya me di nav gel de baş bi rûmet û qedrê wê heye. Yanî siyaseta vê partiyê ji roja roj de paqij e. Peywendiyên me bi kes û cihê xerab re qet çênebû û me tişteki kirêt nekiriye. Gelê me ji partiya Pêşverû gelek dilgeş û dilxweşe. Kar û xebatên ku bêne kirin heke partiya me ne di nav de be, di çavê gel de ew kar ne rêk û pêke û dilê wan ne rehete. Ya herî girîng jî partiya me nebûye dûvê






tu kesî û dijminantiya hêz û rêxistinên Kurd nake. Li ser xetek neteweyî û li pey berjewendiyên Kurd û Kurdistanê ye.

**Partiya we jî di nav pevgihaniya ENKS'ê de cih digire. Piştî lihevkirina ENKS'ê û PYD'ê li Duhokê, heta niha jî ENKS'ê nûnerên xwe diyar nekirine, sedemê vê nakokiyê çiye?**

Partiyeke bi navê PDKS heye, ew ji encumenê daxwaziya du nûneran dike, partiyên din jî vê yekê qebûlnakin û dibêjin em tev wekî hev in, divê her partiyek nûnereke wê hebe. Arîşeya esasî ev e.

**Li Rojavayê Kurdistanê ENKS çiqasî xurt e, wekî PYD'ê dibe gelo?**

Niha bêjim wekî PYD'ê xurte dibe şaş bê fêhmkirin, lê ne ji biçekbûna PYD'ê be jê bihêztir e. Di hilbijartina sala 1990î de me 52 hezar û PYDê jî 24 hezar deng stend. Wê demê gel bêtir ji PYD'ê hezdikir niha ew hezkirin kêm bûye.

**Derwêş dide zanîn ku kurd gihîştine asteke ku hemû nakokiyên navxweyî bidin aliyekî, bo yekrêziyê têbikoşin û Kurdistanê biparêz in.**

**Carekê hat gotin ku Beşar Esed şandiye dûv we, gelo hêj dan û stendinê we bi hev re hene?**

Dan û stendinê me bi hev re tune ne, lê carekê şande dûv min xwest min bibîne lê ez neçûm.

**Sebeba şandina dûv we û neçûna we çibû?**

Xwestiye têkiliyên xwe bi min re xweş bike û bipêş bixe. Yanî xwestiye partiya me têxe şûna PYDê. Li balefirgeha Qamişlo seetekê zêde teyare li benda min hişt. Waliyê Hesekê dostê min bû, sê cara li min geriya got"Hemîd ez hêvî dikim tu here, çûna te baştire" min got walle ez naçim û neçûm.

**Tekiliyên we bi muxalefeta Sûriyê re çawane?**

Başin, peyvendiyên me û wan xweşin. Em wan baş nasdikin. Ez niha serokê komîteya Elanî Dimeşq im (Banga Şamê). Ev wezife hêjî berdewame.

**Di nav muxalefeta Sûriyê de, ji bo Rojavayê Kurdistanê daxwaziyek we otonom an jî fidral heye? Ew bi van daxwaziyên we dizanin?**

Helbet dizanin, me bi hev re wesîqeyek çêkiriye. Di wesîqeyê de; Kurd jî şirîkê vî welatî ne û divê heq û hiqûqê wan were parastin. Peyva Ereb dê Ji komara Sûriyê bê avêtin û wekî berê "Komara Sûriyê" dê bimîne û Kurd di rêveberiya dewletê de yê xwedî biryar bin. Li hevkirina me li ser van û çend xalên dinin.

**Tê gotin hun zêdetir nêzîkî Yekîtiyê (YNK) ne, ev raste gelo?**

Dixwazim vê bêjim, partiya me tu carî neketiye bin bandora siyaseta Yekîtiyê û rêxistinên din. Bi serê xwe fikiriye û bi xwe biryar daye. Wekî niha jî min got em ne dûvê tu kes û partiyanin. Nêzîkatiya me bi teveke partiyên Kurd re wek heve.

**Hun gelekî nêzî Mam Celal in. Ev nasîn û dostaniya we çi demê destpêkir?**

Min û Mam Celal li zanîngeha Şamê bi hevre hiqûq xwend û me li wir hev naskir. Ew nasîn heta roja îro dewam kir û tekiliyên me xweşin. Min mehek berê li Silêmaniyê ew dît. Lê mixabin niha ketiye, tendurîstiya wî ne başe. Em nikarin bêjin Mam Celalê berê ye. Hema tenê saxe...

**Çûna Pêşmerge ya Kobanê hesteke çawa bû?**

Ez bi çûna pêşmergeyan bo Kobanê gelekî kêfxweş û şanazim. Rojeke dîrokî bû. Xwezî PYDê rê li pêşiya pêşmergeyên ENKS'ê jî vekira û yên me jî biçûna. Lê nehiştin herin.

**Sebebê nehiştinê çi bû, ji bo çûnê we bi wan re hevdîtin çêkir?**

Erê hevalên me yên ENK'Sê bi wan re hevdîtin çêkirin lê destûr nedan. Gotin bila werin tevlî YPGê bibin. Ji xeyrî xwe pê ve tu kesên din qebûlnekirin.

**Sebebê ku DAÎŞ erîşî kurdan û axa wan dike çi ye? Çima ewrên reş tim li ser banê Kurdistanê ne?**

Kes nabêje DAÎŞ Beese, ew Bees bi xwe ye û dixwaze Kurdistanê xerabike. Qaşo bi navê Îslamê dike, lê derewan dike û tu eleqa wan bi Îslamê re tuneye. Li Başûrê Kurdistanê ew cihên ku di nav Ereb û kurdan de bûbûn sebebê nakokiyê wekî Şengal, Mûsil, Kerkûk, Celewla, Sadiye û cihên din bistînin û ji Kurdistanê biqetînin. Ev jî gelek balkêş e ku piştî axaftina Barzanî di derbarê serxwebûnê de, DAÎŞ'ê berê xwe da Kurd û axa Kurdistanê. Xuyaye efendiyên wan ev wuha xwestine.

Li Sûriyê jî ev tişt kirin, erîşa Kobanê ji bo ku têkiliya Cizîr û Efrîn ji hev qutbikin û wê herêmê bikin Ereb. Heke bikin Ereb jixwe Kurdistan namîne. Êdî Kurd hew dikarin doza welatê xwe bikin, armanca wan ev e.

DAÎŞ bi hîsab û pîlan erîşî van cihan dike, heke Kobanê bistînin dibê kelemek di nava Cizîr û Efrînê de û ev yek ji bo kurdan gelek xetere. Lê Pêşmerge û şervanên Kurd berxwedaneke mezin dan hem li Başûr û hem jî li Rojava axa xwe bi canfedane parastin û nehiştin têkeve destên DAÎŞ'ê. Ez bawer im DAÎŞ jî poşman bûye bi erîşkirina ser kurdan.

**Cenabê we ev nêzî 60 sal e di nav siyaseta kurdî de ye, hun wekî siyasetmedarekî kurd û xwedî tecrube, qewîtî û şîretên we ji xortan re çine?**

Banga min ji xortan re bila qet zilm û zordestiyê qebûlnekin. Diktatoriyeta tirk û ereban heta ya kurdan xwe bi xwe jî qebûlnekin. Ji bo jiyanek demokratî tevbigerin û bixebitin. Kurdistan ku ne demokratîk be ez bi xwe jî naçim û nabêjim a min e. Hema tenê bêje ez kurd im û tiştekî neke ji bo kurdayetî ev ne bese.Em tev dizanin welat bi bedêlên giran tê avakirin. Divê em tev xwe ji xebatê nedin paş û ji bo azadbûna welatê xwe şev û roj bixebitin û ala xwe jî li cihana navnetewî bihejînin.

Spasiya Basnûçe yê dikim û hêviya min hun bi ser kevin û pêşde herin.



# Kuştina egîdekî Serhedî

Şakir Epözdemir

Ku mirov li dîroka kurd û Kurdistanê hûr dibe, bi eşkerayî tê dîtin ku welatê me yê bindest û mûstemleke, rojên reş ji rojên xweş gelek bêhtir borandî ye. 21 sal berê li bajarê Tetwanê rojek ji rojên zivistanê li mala Şewketê bira, parêzerê Tetwanê Av. Şewket Epözdemir mêvan im. Bavê min û malbata Epözdemir'an, gundiyên me, ji Stenbol, Enqere, Mersin, Sêrt û derên din, wê şeva dijwar mal ji mêvanan dagirtî ye. Sirr û sermayeke wisa heye ku mirov nikarê serê xwe derx derve.

Bajarê Tetwanê di halêkî wissa da ye ku bi erd û bi ezman ketiye binê hesarê. Roja 7'ê meha 11. dewleta tirk operasyonek li dar xistibû û 30 kes ew 18 rojan di binê îşkenceyê de dihatin girtin. Ew roj, yani 25.11.1993'an li Tetwanê ev kes wê derketana ber dadger. Ji berk u dadgehê em hemû qebûl nedikir in û tenê birayê minê hiqûqnnas qebûl dikir, ew ji mehkemê 100 – 150 metre û ji mala xwe jî 200 -300 metre dûrî ofisa xwe li benda qerarê ye ka wê çendan ji van êsîran bigrin û çendan jî berdin.

Serê sibê seat di 8.30'an de me bi hev re derîyê ofisê vekir heta seat 15.00'an, yanê seat 3'yê ber êvarê ez li cem birayê xwe bûm. Ji ber ku mêvan hatin ez jê veqetiyam û çûm malê.Mal mala Şewket e. Mala min ji 1983'an ve li Enqereyê ye. Mehkeme seat dor 8'ê êvarê qediya, Şewketê bira xeber girt ku 23 kes tewqîf bûne, birayê me Nemetullah jî bi wan kesan re hatiye tewqîfkirin, Wê demê ofisa xwe digire, li texsîya xwe siwar dibe û li ber malê peya dibe. Deriyê erebeyê digire lê dijmin bi aweyekî bibext, bi hîleyeke ango bi zorê wî ji ber derî hildidê û dibe baregaya leşkerîyê ku li ser wê rê ye.

Jinbira min dixazê şivê bide mêvanan û li Şewket digere lê Şewket cewaba telefonê nade. Ji min ra meseleyê qise kir ku Şewket ji ofisê derketîye û di cî de em ketin telaşe. Neşet Xoceyê birayê Sakîne Xanim kete mal got: " Hun pirsa Şewket Abê dikin, waye seyyara wî li ber derî ye." Roja malbata min a reş û tarî di vê saniyeyê da dest pê kir. Ez weke birayê wî yê mazin îtiraf dikim ku ew êşa wê şevê yek saniye jî hişê min derneketî ye. Çiqas ku 25'ê vê meha bê yom tê, ez di vê hefteyê de jî hal de dikevim. Gelo hikmetek di vêda heye ku sal vedigerê di rihê insanan de hin tişt teze dibin. Heyfa Şewket, Heyfa 30 – 40 hezar şehîdên dest û çiya û newalan, heyfa 3 – 4 hezar ronakbîrên kurd ku her yek ji wan wê bibûna qadroyên dewleta kurd û bi wan ve 17 hezar afilê malûm qewimîn.

Tola van wendahiyan encax bi çareseriyeke adilane, wekheviyeke dirist, heq û mafên netewî û hiqûqî û erdnîgarî, li ser axa xwe, li welatê xwe bi şertê ku kurd qedera xwe bi destên xwe tayîn bikin tê hildan. Wê gavê heyfa wan tê stendin. Ev yek jî bê garantiyetê qet çê nabe. Ev yek bê parlaman û al û artêş jî hîç û hîç çênabe. Divê benda me ji hebe, divê em xwe bê xwedî nehêlin. "kesk û mesk" têra vê doza giran nakin. Ew tenê dikarin ji me re dîa bikin. Wa ye me di berxwedana Kobanê de dît ku dîa û niyaz têr nakin. Şehîdên me yên ezîz û bê miraz, ji vê qanaxê kêmtir napejirinin tu çareseriyan. Dayik û bav û birayên wendahiyan jî ji vê kêmtir qebul nakin. Gava ku bi xapandinan û texsîdan be, bila ew çareserî di binê tehtikê qîrê de be. Çareseriyeke bi texsîdan û zarezar û xalo xalo wê bibe sedema şer û bihevçunên pir giran. Ez hêvîdar im ku em li pêş çavê wendahiyên xwe û li ber çavên dinyayê şermezar nebin û xelk kenê xwe bi siyasetmedariya me nekin. Di vê roja 21. salvegera kuştina birayê minê ezîz de daxwaza min a herê giring ew e ku bila bes siyasetên kurdan di nêynika dêwan da xwe nebînin û xwe bi çirokan nexapîn in. Niha îro piştî şerê giran ê li ser Kerkuk û Şengal û Kobanê nêynikeke wisa li pêşçavên hemû kurd û hemû alemê ye ku emelê herkesî bi eşkerayî tê da tê xwendin û her tişt li ber çavan ne. Dîrok hew bi vir û derew û canbaziyan têne nivisandin. Kî çi biçînin wê wî hilînin. Milletê kurd di mejiyên xwe da piştî mesela DAÎŞ'é Dewleta Kurdistana Serbixwe çandî ye. Ez kalekî 77 salî me. Hiqûqa me ya netewî hatiye wendakirin û înkarkirin. Çawa mafê her milleti heye ku dewleta xwe hebe, mafê me jî heye em xwedî dewlet bin. Careke din jî dibêjim ew kesên ku bo mafên xwe têdikoşin û di vê rêyê de têne kuştin qedirgiran in. Hîvîdar im ku li herçar parçeyan ew kesên di ber mafên rewadar yên miletê kurd de canê xwe dane, xwîna xwe rêtine ciyê wan di nava nura Xwedê da ye. Her wiha parêzvanê Tetwanê ku hemû jiyana xwe da xizmeta mazlûm û ketiyan de derbas kir; ew jî bi ber rehm û xufrana Xwedanê şev û rojê bikevê, serê malbat û nas û dostên wî sax be.





## Deriyê sîm yê Kurdistanê

# Dêrsîm



**Welat Baz**

Deriyê zîv, derbenda sîm, Dêrsîm. Deriyê Kurdistanê. Welatê çiyayên bilind, geliyên kûr û çemên har. Hêlîna qertelan, welatê bazan. Xaka serhildêran, axa maxrûr. Dêrsîm li Bakûrê Kurdistanê di nav eyaletên Amed, Serhed û Qoçgîrî de cîh digre. Bajêr di nav hêlîlarên 38 û 40 û di nav hêlîpanên 39 û 38an de ye.

### Erdnîgar

Pîvana xaka Dêrsîmê 7 hezar û 774 km² ye. Erdîma Dêrsimê % 69,9 ji çiyayan, % 30,1 ji deşt û platoyan pêk tê. Dêrsîm ku di tejena Firadê de ye, ji alî sînorên xwezayî ve hatiye dorpêçan û devereke bilind e. Xaka Dêrsîmê ji bakûr ve ji alî Çiyayê Mûnzir, ji rojava ve ji alî Geliyê Avareş, ji başûr ve ji alî Gola Kebanê û ji rojhilat ve jî ji alî Geliyê Perî ve hatiye pêçan.

### Çiya

Xaka Dêrsîmê bi piranî ji bilindahiyan pêk tê. Çiyayên Dêrsîmê ku bi gelemperî wek Mûnziran tên naskirin, berdewam a sîlsîleyên Torosên rojhilate. Lûtkeyên Mûnziran li seriya 3 hezar metreyî ne. Serê çiyayan havîn û zivistanan biberfin. Zivistanan derbendên Mûnziran tên girtin û çiya her sal 8 meh di bin berfê de dimîne. Ji ber ku kevirên Mûnziran nermin, di van çiyayan de gelek şikeft jî peyda bûne. Ev şikevt heta salên dawîn jî ji bo sitara sewalan dihatin bikaranîn. Bilindahiyên Mûnziran rûtin. Li hin deveran quntarên çiya ji alî daristanan ve hatine xemilandin. Xaka Dêrsîmê ji % 12 daristanin. Niha ji van daristanan gelekê wan hatine şewitandin.

### Çemê Mûnzir

Çiyayên Dêrsîmê seranser bi av û kanî û rûbaran ve xemilandine. Di erdnîgara bajêr de sê çemên girîng ê wek Mûnzir, Perî û ava Pilomer diherike. Çemê Mûnzir hem di xaka Dêrsîmê de, hem jî di dîrok û efsane û çîrokên bajêr de cîhekî girîng digre. Mûnzir ji bakûrê Zerenîkê ji Girê Ziyaretê ji Çilkahnî dizê. Çem ji serbejêrên Zerenîkê bi hêzekî mezin diherike û li deverên rast ber bi rojava û rojhilat li dû milî diqete.

Li deştên Zerenîkê çemên wek Xaçor, Mamikan, Şamikan, Nanîkan, Mercan û Merho hene. Çemê Mûnzir piştî ku avê van çeman jî digre li nêzî Dêrsîmê bi ava Pilemorê re dibe yek.

Piştî vir navê Mûnzir digre û berê xwe dide başûr. Çemê Mûnzir di nav kurdên Dêrsîmê de avekî pîroz e. Li gor efsaneyan çem navê xwe ji şivanek girtiye. Mûnzir ewliyayekî xwedê ye û li cîhê ku wendabûye ava Mûnzir zaye. Dîsa li gor baweriyên kevn, Ava Mûnzir ji pêsîrên xwedawenda Anahîta dize. Ji ber vê yekê di çareserkirina pirsgirekên civakî de vexwarina ava Mûnzir wek sondekî tê qebûl kirin.

**Dêrsîm bi xweza û çiyayên xwe yên bilind, bi av û cîhên xwe yên dîrokî şaristaniya bi hezaran salan di paşila xwe de dihewîne**

### Xwarin

Di midbexa Dêrsimê de lopkifte xwarina sereke ye. Lopkifte ji arvanê nîsk û cûlbant (beqle) tê çêkirin. Nîsk û cûlbant tevlîhev dibe û tê şilkirin, pivaz û bexdenûsa hûrkirî dikeve navê. Wek rûlo tê topkirin û paşê tê kelandin. Piştre rûnê sorkirî tevî îsota sor bi ser de tê reşandin û tê xwarin.

### Kinc

Li heremên çiya ê Dêrsimê hîn jî kincên gelêrî tê lixwe kirin. Jinên Dêrsimî etegekî bi navê ‘pêşî’ û bi serde jî îşligekî lixwe dikin. Li pişta xwe kefiyekî û bi ser de jî şerîdekî rengîn bi navê ‘kejik’ girê didin. Di lingên wan de solên kapikbilind û gorên hirî hene. Keçên ciwan şarpe yên tul, jinên pîr jî yên hevreşim û rengtarî didin serê xwe. Zilam şalwar, îşlik û çakêt lixwe dikin. Goreyên zilaman bi navên galik, dîzleme û qonçî tên zanîn.

### Nav

Li gor belgeyên dîrokî b.z herema Dêrsîmê di çavkaniyên Yûnanî de wek ‘Daranîs’, di çavkaniyên Persî de jî wek ‘Zûza’ tê binavkirin. Nawenda bajarê Dêrsîmê di sala 1937’an de wek garnîzonekî leşkerî hat damezirandin. Dêrsîm ku hat avakirin ji alî Tirkan ve wek ‘Tunceli’ hat binavkirin. Heta van çaxan nawenda herema Dêrsîmê, Xozat bû.

Devera ku bajêr lê hatiye damezirandin bi navê ‘Kalan’ jî tê naskirin. Bajêr ji ber ku li nêzî gundê Mamikan hat avakirin, bi vî navî jî tê naskirin.

Dema Dêrsîm tê gotin bi gelemperî herem tevî hemû navçeyan tê bîra mirov. Heta salên dawîn jî ku nawenda bajêr hîn gundekî bû, herema Dêrsîmê bi taybetî bi navçên Mazgîrd, Zerenîk û Xozatê ve dihat naskirin.

Li gor dîroka nivîskî li herema Dêrsîmê jiyana şaristanî 3 hezar sal b.z diçe. Di salên 2000‘an de li heremê hukumdariya İşûwayiyan û paşê jî Mûşkiyan destpêdike. Di salên 600‘an de Med 150 sal heremê di bin destê xwe de digrin û paşê dema Persiyan destpêdike. Îskenderê Mekedonî ku di salên 330‘an de dikeve Kurdistanê, Dêrsîmê ji Persiyan distîne û dema piştî wî li Dêrsimê dewra Bîzansiyan destpêdike. Di van salan de Dêrsîm di nav artêşên Ereb û Bizansê de dibe sehna şer. Piştî salên 1100‘an êdî Selçûqî dikevin heremê. Di vê navberê de di sala 1243’an de ji alî Moxolan û di sala 1387’an de jî ji alî Artêşa Tîmûr ve tê talan kirin.

Piştî 1500’an li Dêrsîmê desthilatiya Osmaniyan destpêkir. Di van salan de Dêrsîm û derûdorê ji bo belavkirina ola Şiîtiyê ji alî Şah Îsmaîlê Sefewî ve wek heremeke taybetî hatibû hilbijartin. Helbet Siltanê Osmanî Yawûz jî li dijî belavbûna Şiîtiyê tedbîrên hovane sitend û Dêrsîm jî di nav de li gelek hereman qetliamên Şiyan kir. Di bin hukumdariya Osmaniyan de di nav Dêrsîmî û dagirkeran de tû car aştî çêne bû. Gelek car şer derketin.



Lê Dêrsîmiyan her tim metîngeran ji welatê xwe dûr girtin.

### Bi destpêka salên 1900’an ve

Dewleta Osmanî ketibû pêvajoya belavbûnê. Di nav gelên bindest de bayê netewî destpêkiribû. Rewşenbîrên kurd jî dest bi xebatan kiribûn. kurdên Dêrsîmê jî di nav van xebatan de cîh digirtin. Di sala 1912’an de Mele Xidirê Dêrsîmî bi navê ‘kurdistan Muhiban Cemiyeti’ rêxistinekî dizî damezirandibû. Cemiyet demekî şûnde ji alî polisê Osmanî ve hat girtin. Dêrsîm di wan salan de herçiqas di nav tixûbên Împaratoriya Osmanî de bû jî, ne din bin dagir û rêvebiriya wan de bû. Dêrsîmiyan bac û leşker nedidan dewletê. Di van salan de li Dêrsîmê gelek Ermenî jî hebûn. Li gor salnameyên sala 1880’an li heremê 13 hezar Ermenî hebûne. Di salên qetlîmamê de jî, gelek Ermeniyan xwe sipartibûn Dêrsîmê û ji kêra Tirkan filitîbûn.

Di salên Şerê Cîhanê ê Yekem de Artêşa Tirk heta ber derê Dêrsîmê hatibû. Dewleta Osmanî duxwest eşîrên Dêrsîmê li dijî Artêşa Rûs û Ermeniyan bikarbîne. Lê bi ser neket. Di vê navberê de di sala 1916’an de li Dêrsîmê li dijî Artêşa Osmanî serhildanekî mezin derket. Mazgîrd, Nazimiye, Çarsancak û Pêrtax ji Osmaniyan hatibû pakijkirin.

Piştî damezrandina Komara Tirk, pêdiviya Kemalîstan bi kurdan nema. Ji ber vê yekê dest bi tasfiya wan kirin. Mebûsê Dêrsîmê Hesen Xayrî di pêvajoya Peymana Lozanê de, bi daxwaza Mustafa Kemal, di meclîsa Tirk de kincên kurdi li xwe girêdabû û li ser navê kurdan têlgraf kişandibû Lozanê û Heyeta Tirk wek ‘Heyeta kurdan jî’ dabû nasandin. Xeyrî di sala 1925’an de dîsa bi fermana Mustafa Kemal, bi ‘kurdperweriyê’ hat tawankirin û di encam de hat bidardekirin.

### Seyîd Riza

Seyîd Riza ji bo vê qirkirinê bide sekinandin di 5’ê Îlona 1937’an de bersîwa banga hevdîtinê da û ji bo fermandarên Tirk bibîne çû Erzînganê. Serokê kurd li wir hat girtin. Di 18ê Mijdara 1937’an de li Bajarê Mazrayê tevî kurê xwe Reşik Husên û deh hevalên xwe hat dardakirin. Seyîd Riza li ber sêpêyê digot; ‚Dêrsîm têk çû. Lê wê kurd û Kurdistan bijîn.’

### Elîşêr

Serokekî serhildana Dêrsîmê jî Elîşêr bû. Elîşêr eslen ji Dêrsîmê, ji Eşîra Şêx Hesenan e. Ev rewşenbîrê welatparêz ku di heman katî de şaîrek mezin jî bû û li ser hêstên netewî gelek şiîran nivisandibû, di sala 1921’an de di Serhildana Qoçgîrî de jî rolekî mezin leyistibû û piştî têkçûna vê serhildanê, xwe sipartibû çiyayên Dêrsîmê. Elîşêr di dema Serhildana Dêrsîmê de jî di rêxistina leşkerî de, tevî Seyîd Riza serokatî dikir. Ev serokê kurd di sala 1938’an de tevî jina xwe Zerîfe ji alî sixurên rejimê ve hat kuştin.

Piştî têkçûn û tevkujiya Dêrsîmê sazûmana Kemalîst, ji bo ku Dêrsîm carek din nebe devereke serhilder gelek tedbîran sitend. Pêşiyê navê bajêr wek ‚Tunçeli’ guhertin ku wê ev nav her tim destê wan ‚ê wek tûncê hişk’ baniya bêriya Dêrsîmî ya. Paşê gund û komikên Dêrsîmê valakirin. Serekeşîr û kesên rûspî şandin sirgûnê. Li heremê meqerên leşkerî danîn. Dibistanên asîmîlasyonê vekirin. Di van dibistanan de bi sedan xortên Dêrsîmî bi ziman û çanda Tirkî li dijî gel û dîroka xwe hatin perwede kirin. Piştî salên 1945’an rêvebiriya dewletê gihîşt wê baweriyê ku li Dêrsîmê kurdayetiyê daye jibîrkirin, hin tedbîran sist kir û di sala 1947’an de sirgûniyan efû kir û ew zivirîn ser zêwiyên xwe. Hin gund û kom carek din şên bûn.

Lê welatparêzî her tim wek agirê bin pûş di sînga Dêrsîmê de veşartî mabû. Di dawiya salên 1960’an de Partiya Demokrata Kurdistana Tirkiyê (PDK-T), ji alî Dr. Şivan ê Dêrsîmî (Sait Kırmızıtoprak) ve hatibû damezirandin.

Di heman demê de 49 welatparêzên kurd di sala 1959’an de ji alî dadgehan ve hatin girtin. Dr. Sait Kırmızıtoprak tevî hevalê xwe yê Dêrsîmî Yusuf Kaçar di nav van girtiyan de bû. Dr. Şivan di sala 1972’an de li Başûrê Kurdistanê tevî hevalên xwe Hasan Yıkılmış û Hikmet Buluttekin ve hat kuştin.

Dêrsîm hatibe dagirkirin jî, tû car teslîm nebûye. Di dîroka berxwedana Dêrsîmê de gelek car tevkujî hatine kirin. Gund û navçe hatine şewitandin. Lê hêzên biyanî Dêrsîmê bidest nexistine. Ew ter tim li Dêrsîmê li pişt çeperan de di parastinê de bûne. Her kevirek vî bajarî ji bo wan sengerekî, her kesekî Dêrsîmî ji bo wan serhildêrekî bûye.

**Ji dema Selçûkiyan bigire hetani Osmaniyan û heta Komara Tirk, Dêrsîm her dem bûye hedef û qurbaniya mêtingeran**



## Berxwedana Dêrsîmê

Komara Tirk piştî tefandina Serhildana Şêx Seîd û ya Araradê berê xwe da Dêrsîmê. Li Kurdistanê cîhê yegane ku dagirker neketibûnê Dêrsîm bû. Ber bi salên 1926’an Kemalîstan ji bo dorpêçan û xapandina eşîrên Dêrsîmê amadekariyan kirin. Bi rêbaz û hîleyan di nav eşirîran de nakokî derdixistin û wan berî hevûdû didan. Herwiha duxwestin ku li çend hereman meqerên leşkerî deynin û çekên eşîran ji wan bistînin. Di vê navberê de car cara herdû alî ji bo hevûdû bipîvin û pîlanên hevûdû fêhmbikin, şerên biçûk derdixisitin.

Di van rojan de Serhildana Agirî teqiya bû. Kemalistan pîlana ‘îslahkirina Dêrsîmê’ hiştin heta sala 1936’an. Di vê salê de Mustafa Kemal di axaftinekî meclîsê de Dêrsîmê wek ‘kînor’ binav dikir û fermana birrîna vê kînorê dida. Li ser vê yekê Artêşa Tirk ket nav tevgerê û dor li Dêrsîmê girt. Eşîrên Dêrsîmê ku serokatiya wan Seyîd Riza dikir, daxwazên teslîmbûnê redkirin. General Abdullah Alpdoğan ji Dêrsîmiyan 200 hezar tifing duxwest. Di Bihara 1937’an de êrişa artêşê destpêkir. Hefteyên pêşîn balafiran li ser eşîran bombe barandin û paşê leşker ketin heremê. Heta meha Îlonê şer bêrawestan domkir. Artêşê ji ber ku li hember şerwanan berxwenedida, berê xwe didan sivîlan. Bi dehan gund tevî rûniştvanan hatin şewitandin. Li Dêrsîmê tiştên ku tevdigeriya, dihat gullebarankirin. Di encama vê hovîtiyê de bi hezaran jin û zarok û pîr hatin kuştin.



## Entellektûelê xerîbiyê

# Lehengekî kurd di wêjeya Nemsa'yê de


Mehmet Gültekin

Dema nivîskarê serpêhatiya "Evdilla" Moritz Hartmann û hin Awrûpayî di sala 1854 an de çûbûn Romanya'yê ew li wir rêberekî kurd bi navê Evdilla di mala doktorekî alman ya li Schumla li ser giraveke li Donau nas dikin ku ew mal li rexê baregeha Kurdan bûye. Dewlêta Osmanî wek gelekan Evdilla û pê re komek mirov ji Kurdistanê aniye vê herêmê ji bona ku ew di şerê li Balkanê de alîkariya Osmaniyan bikin. Evdilla gelekî bala nivîskar û hevalên wî dikişêne. Moritz Hartmann wî weke mirovekî aqilmend, bedew ê romantîk û bi çek û sîlehên herî baş li hepekî bi rewş û reşme siyarbûyî şirove dike. Di sohbeta wan de Evdilla hin ramanên xwe yên mirovhizî derbarê şer, aşitî û baweriyan de tîne ziman, wisa ku hemû guhdarvan matmayî dimînin. Wek mînak, dema ew qala baweriyan dikin, Evdilla ji wan re dibêje: „Hemû bawerî wekhev in, cudatiya wan a ji hevdu weke ê gîhayê ye, yê ku goreyî cudatiya erd û ezman ê ku ew tê de ye xwe diguhire.“ Piştre jî Evdilla ji wan re li ser neqeyilbûna xwe a li hember dewleta Osmanî de diaxife.

Di heman demê de serbaz Omer Paşayê osmanî bi biryara dewletê dixwaze hêzên Başibozûkan bike bin baskê artêşa nîzamî û bang li wan dike ku ji hspan peya bin û çek û sîlehên xwe daynin, lê Başîbozûk vê yekê qebûl nakin û berxwe didin. Nivîskar Hartmann dibêje, dewletê ew spartibû belengeziyê û wan jî dest bi talan û kuştinan kiribû û niha jî dixwast xwe ji wan xilas bike. Gelek şer û tevlihevî çêdibin û di encamê de pirayniya wan tên qetilkirin. Ev bûyer li giraveke ser çemê Donayê a nêzikî Giurgewo û li hember bajarê Rusçûk diqewimin.

Wê waxtê nivîskar û hevalên xwe li Bûkreşê bûne û bihîstine ku di vî şerî de Evdilla jî hatiye kuştin. Wan gelek heyfa xwe bi wî anîne û gotine: „Rojhilatê fîlozofê xwe ê gewre û bedew windakir.“

Lê dema nivîskar digihêje Stenbolê ji dostên xwe ên polinî dibihîse ku ew nûçe ne rast bûye. Evdilla di wî şerî de ji aliyê leşgerên osmani de tê birîndar kirin, birînên xwe girêdide, li hespa xwe sîwar dibe, bi şev û roj dajo, dicadîne û piştî demekê li başûrê Bulgaristanê nêzikî bajarê Schumla xwe dispêre çewliga mirovekî polinî ê ku bi dehsalan e li wir wek penaber dijî. Zilamê polinî ê 70 salî û keça wî Nataliê di mala xwe ya ku derdorên wê bi av, çem û kûlîlkan xemilî de birînên Evdilla kew dikin.

Demek şûnde hin Başibozûk ên ku ji ber şer û tevliheviyên li Balkanê birçî û bêserî mane êrişî çewlika polinî jî dikin. Evdilla bi çek û sîlehên xwe bi mêrxasî tev kalê polinî li hember wan berxwe dide, zora wan dibe û wan ji wir dûr dixîne.

Di wê navberê de dilê Evdilla dikeve Natalie a delal û dixwazê pê re bizewice û wê bi xwe re bibe Kurdistanê. Her çiqas ji ber bedewî û mêrxasiya Evdilla dilê Natalîe jî di wî de hebûye lê belê tirsa wê ew bûye ku ew piştre li Kurdistanê bibe yek ji 2-3 jinên Evdilla. Piştî ku tendrustiya Evdilla baş dibe, ew pêşniyar dike ku Natalie û bavê wê ji ber metirsiya wê herêmê bi wî re warin Stenbolê. Wisa jî dibe, hersê bi tevayî di cotmeha heman salê de tên Stenbolê.

Rojekê Evdilla di kolaneke Stenbolê de rastî papazekî nastûrî tê ku ew wî ji herêma xwe ya li rexê çemê Firatê nas dike. Piştî axaftinek dûr û dirêj diyar dibe ku papaz wek qasidê Nastûrî û Êzdiyên herêmê hatiye Stenbolê, ji ber ku wan bihîstiye ku bi saya Fransiz û Îngilizan wê bona wan mafên nû bên dayîn. Mebesta papaz jî ew bûye ku ewlekariya wan li hember Kurdên nijdevan û rêbir bê parastin.

Hema di wê demê de fikrek tê serê Evdilla û ji papaz re dibêje: „Destê Fransiz û Îngilizan nagihêje çiyayên me û tu dizanî ku me gelek caran jî nîşan da ku qanûnên tirkan xema me nînin. Ger hûn ewlekariyê dixwazin, hûn dikarin wê bi tenê ji Kurdan bixwazin û bi destxin. Niha ricake min ji te heye, ger tu bikaribî wê biqedînî, ez ji te re bi ser navê Xwedê sond dixwim ku hûn û emê li welat bi hevre di nav aşitiyê de bijîn.“ Papaz piştî guhdariyeke ji dil û can ji Evdilla pirs dike, ka daxwaza wî çi ye. Evilla berdewam dike: „Ez aşiqê Natalie me a ku keçeke xristiyan e, ew jî min dihebîne, lê ez bawer im ew ji ber fikarên olî naxwaze ware Kurdistanê. Ger tu bikaribî wê serwaxt bikî ku ew daxwaza min qebûl bike û bi min re ware, ewê li herêma Firatê ji we xristianan re jî bibe milyaketê parastinê.“



Papaz dilezîne û bî wî re diçe cem Natalie, bi aqilmendî wê serwaxt dike ku ew bibe jina Evdilla ê ciwanmerdê ji Kurdistanê. Evdilla jî soz dide ku ew ê ticarî li ser Natalie nezeweice û bi hemû hêza xwe bona parastina xristiyanên li welatê xwe bicedîne. Piştî demek kurt, di payîza derengî de kerwanê ku ji kalê polinî, keça wî Natalie, Evdille, papazê sûryanî û çend xulamên wan pêkdihat ji Stenbole bê deng û bê hes derketine û berbi rojhilatê windabûne.

**Ji vir pêve nivîskar weha dom dike:**

„Niha di vê meha adarê nûçeyek derbarê wan de gihîşt vira li Stenbolê. Di nameyeke kalê polinî ji bo hevalekî wî ku tê de gelek agahî derbarê serhildanên niha yên li Kurdistanê cîh girtine ket destê min. Ez ji agahiyên di vê nameyê de fêr bûm ku Natalie di bin konê reş de jiyaneke bextewar dimeşîne û Evdille jî li welatê xwe wek rêberekî bi rûmet gelekî tê hesibandin û niha jî yek ji lehengên herî sereke ê serhildana Kurda ye. Diyar e ku Omer Paşa wê bawer neke wekî ew tova ku wî li grava Donau reşnad niha li welatê derdorê Firatê bi vî awayî şîn dibe.“

Nivîskarê awistiryayî Moritz Hartmann(1821-1872) di dîrola wêjeya welatê xwe û her wehe di hemû welatên almanîaxêv de xwedî navekî gelekî giranbihaya. Ew ji malbateke ronakbîr e, wî bi taybetî felsefe û wêje xwendiye û ji bo gelek kovar û rojnameyan wek nivîskar û redaktor kar kiriye. Hartmann 11 pirtûk ên ku bi piranî ji helbest, roman û serhatiyan pêktên nivîsandiye û weşandiye. Ev pirtûkên wî her car bi dubare ji nuûve tên çapkirin û gelek berhemên wî di dibistanan weke mijarên dersan tên xwendin.

Di dema bûyerên şerên di navbera Rûsya û Osmaniyan de Moritz Hartmann weke rojnamevan û nivîskar 5 salan li welatên Balkan û Stenbolê maye. Ew bûyerên nivîskar di vê çarçovê de weke serhildanên Kurdan destnişan dike, diyar e ku serhildana Êzdîn Şêr e ku bi rastî jî di payîza sala 1854 an de destpêkiribû.

Ev serhatiya bi navê eslî „Abdallah“ ji 15 rûpelan pêktê û cihekî gelekî taybet di berhemên wî de digire. Bi rastî jî Moritz Hartmann di wê demê Evdilla nas kiriye, di bin bandora kesayetî û qerektera wî de maye. Hartmann bi ser de helbesteke bi sernavê "Evdillahê Kurd got“ jî li ser wî nivîsiye ku ew tê de Evdilla wek hevalekî dihesibîne.



## Şevket Epözdemir

# Kelemê çavê sertextan

Rawîn Stêrk

*Erê bira bila neminim zivistana vê tetwanê çendi sar e*
*Vê şevê şev tarîya zalima şevketê bira çira mala bavê min ji ber derî revandiye ezê nizanim*
*Birayê min girtî ye an kuştî ye an birîndar e. Şîn û girî girtî ye ser konê mala bavê min birova*
*Ezê bi kezeba şewitî li enqera wêran li nas û dostan digerim bi gilî û bi gazin û bi hawar im*

Li navçeyeke li ser sînor cihê goreke tomarî hatibû kifşkirin di demekê de. Dayîkeke ku lawê wê wendayî jî tev malbata xwe ketibûn ser rêya vê navçeyê. Meriv rût û repal dimîne ku navekî li hêstên di destpêka vê rêwitiyê de bike. Gelo ew dayîk xwedî hêsteke bi çi rengî bû. Li aliyekî egera ku êdî dawî ji êşeke bê, da ku goreke ku ew biçin pê de bigirîn hebe. Li aliyekî jî egera ku hêviyek bişkê û bi dawî bibe. Nexwe piştrast bibe ku lawê wê êdî mirî ye... bele ew dayîk dema ku gihîşt ser gorê bi herdû dest û deh tiliyên xwe destpêkir û erd veda. Erd veda û ax gîhand esûman. Bi lorîn, bi qêrîn, bi şewat û sincirîn hêstir daxistin ji ezmên. “Xwedawo, qarbana te me ku ew gora kurê min be...” belê dibe ku hin kes vê rewşê weke şîzofrenî bi nav bikin. Lê tu kiras li bejna tu pêyvan nedihat û tu hevok nedigîhiştin tu xalan da ku maneyekê bispêrin wê qêrînê. Ew rastî, nêynika bi hezaran dayîk, bav û xwîşk û birayan e ku li ser xaka Kurdistanê mayînde bû. Hin dayîkên din li gor xwediya vê hewarê ‘bi şans’ in da ku ew bi çîroka zarên xwe zanin, gorên wan diyarbûyî ne û ew dema ku bixwezin dikarin herin û li ser gora malbatiyên xwe bistrên an jî bigirîn.

Salên 90'î ku li Kurdistanê bûn sedem ku çend nifş kêm û birîndar bimînin bi têra xwe ji xwîn, jan û azarê hatin pêçandin. Rewşenbîr, xwende, zane, cotkar, şivan û zarokên Kurdistanê bi desten sertextan bûn noka ser sêlê. Her parçeyek pişiqî aliyekî, her aliyek di zinarekî re velqitî, bû êş û nuqitî dilê dayîk û bavan. Dema ku meriv gava xwe biavêje hundirê kîjan malbata Kurdistanî, meriv xîret nake da ku serê xwe rake û li dîwaran binêre. Ji ber ku dîwarên malên kurdan bi sûretên wendahiyan hatine lênen.

Ji wan sûretên ku dema bi ber çavên mirov dikeve yê ku dibe hêstir û dibare jî Parêzer Şevket Epözdemir e. Bi gotineke din, Şevketê bira... ew risteyên despêka nivîsê gotinên Xêro Abbas in ku di strana ku ji bo Epözdemir xwendibû de hatine ziman.








Salên 90'î û di heman demê de rewşa Tetwan û xebatên Epözdemir herî baş di romana Hasan Bildirici ya bi navê ‘Dönüşü Olmayan Yol’ de (Rêya Bê Veger) hatiye vegotin. Hêvîşikestiyên ku li ofîsa Epözdemir digîhîjin hev, zordarî û xofa serdarên demê û çûyîna bê veger...

Şevket Epözdemir: parêzer, humanîst, zane, bîrdoz û evîndarê Tetwana rengîn. Bavê Serdar, Serhat û Şîlanê. Her çiqas ku ew ne Bedlîsî be jî, rengîniya Tetwanê dikeve dilê wî û li wir bi cî dibe. Em werin ser çîroka wî...

Şevket Epözdemir di sala 1943'an de li gundê Minar yê bi ser Baykan a Sêrtê ve jidayîk dibe. Dibistana seretayî li vir kuta dike û pişt re li Dibistana Mamostetiyê ya Dijle bi cîh dibe. Pişt re Enstîtuya Perwerdahiyê ya Amedê kuta dike û weke mamosteyê wêjeyê dest bi kar dike. Di navbera 1964 û 83'an de mamostetiyê didomîne. Di 1968'an de bi hinceta xebatenên siyasî tê sirgûnkirin û li Sorgun a Yozgatê karê mamostetiyê didomîne. Di heman demê de li Zanîngeha Enqere di beşa hiqûqê de dest bi xwendina hiqûqê dike. Hiqûqa ku rojekê bo wî her bin erd bibe û bi kêrî tiştekî neye...

Di 1975'an de mezun dibe û piştî salekê li Tetwanê bi cih dibe û êdî bo gelê xwe parêzgeriyê dike. Di salên ku her roj kurdek tê revandin, tê kuştin, gund têne şewitandin û birînên bê derman ji xaka welat têne vekirin de ew li ber dozger û dadgerên sertextan mafdariya qewmê xwe dike. Di dema ku SODEP tê avakirin wek serokê navçeyê di nava siyasetê de cihê xwe digire. Pişt re DEP û SHP û pê re jî wek Nûnerê İHD'ê yê Tetwanê pêywira xwe didomîne. Di heman demê de endamê Baro ya Vanê, Endamê Meclîsa Şaredariyê jî kar dike.

Epözdemir her tim bi rê û rêbazên hiqûq û demokrasiyê tevdigere û gotina wek, “Ger tu dixwazî alîkarê gelê xwe bî, pozisyona te çi dibe bila bibe tu dikarî li wir fêdeyê bigîgîjînî gel. Tenê weke findekê divê tu xwe vêxî û hewil bidî ku tu xewlê bidî derdora xwe” nêzikahiya wî ya li gel jiyanê dide der. Li aliyê din ew bi xwendinê tê naskirin ku her tim di çenteyê wî de pirtûkên di derheqê wêje û rewşa cîhanê de hene. Wê demê hemû berhemên klasîk yên wêjeya cîhanê xwendine û di axaftinên xwe de mînakan ji wan dide.

Di çalakî û pîrozbahiyên gel de weke pêşengekî cîh digire, bo siyaset û mafxwestinê rêya rast nîşanî derdora xwe dide û yên ku wî nas dikin, hêvî û kelecaneke mezin distînin ji jiyanê. Di heman demê de dozên kesên ku hatine wendakirin jî ji wî re tên û hemû dema xwe bi xebata li ser van dibihorîne. Dema ku peyamnerê Özgür Gündemê Ferhat Tepe tê revandin jî dîsa navnîşan Epözdemîr e û bo dadger û dozger cihê Ferhat nîşandin. Bo doza Ferhat bi şev û rojan dixebite lê di heman demê de ji wî re jî gef û gilî tên û bi kuştinê tê gilîkirin. Wî dixwest ku ew doz bê zelalkirin û faîlên Ferhat bêne darizandin. Li ser vê ew jî bû hedefa gurên dev bi xwîn piştî revandina Ferhat bi 3 mehan di 25 Mijdar a 1993'an de ew jî tê revandin. Di heman rojê de Epözdemir dema ku êvar vedigere mal ji aliyê kontrgerilayên dewletê ve tê revandin û roja duyem jî cenazeye wî bi awayekî êşkenceyên giran lê hatî kirin li nêzikî gundê Morg a di navbera Norşên û Tetwanê de tê dîtin.

Piştî wê bi demekê berçavka wî li ber deriyê Mala Arteşê ya ku li nêzî mala wî ye tê dîtin. Tevî hemû serlêdan û dozan jî dewlet li xwe heq nake ku Şevket Epözdemir ji aliyê pêywirdarên wê ve hatiye revandin û kuştin. Li dû wî jinek û 3 zarokên temen biçûk dimînin û serê gelekî bi kuştina wî re careke din bilind dibe bo nehletkirina kujêr û xwînrêjan.

Piştî ku Epözdemir hat kuştin li Tetwanê demeke dirêj bêdengiyek li bajêr asê ma û kurdên Serhedê weke ku pêşengê xwe wendakiribin şîn û zemar girêdan. Ji malbata wî çend endamên din jî weke wî berê xwe dan hiqûqê û ew jî bûn parêzer, bi ser de jî bo doza kuştina wî ketin nava lebatê. Doz birin Dadgeha Ewropa û Tirkiye di vê dozê de jî sûcdar hate dîtin û cezakirin. Zarokên wî jî gihîştinê û piştî ku zanîngeh kuta kirin, Serdar bû bijîjk, Serhat bû psikolog û Şîlan jî bû arkeolog. Ji aliyê Baroya Bedlîsê ve jî navê li saloneke hate kirin.

Di doza ku di derheqê kuştina wî de hatibû vekirin de dozger û dadger jî li hember mirovatiya wî, têkoşîn û xebata wî û tişta ku ew neçarê hati kirin matmayî dimînin û bi çavên girî guhdariya malbata wî dikin. Belê ew jî di nava lîsteya wendahiyên ku berpirsên wan ne diyar in de bi cî bû û bû mêvanê rêhevalên xwe.

BasNûçe 01-07 Kanûn 2014



Kalê Badî

Mizgîn Tahir

# Muzîka rojhilatî hîn xwe îsbat nekirî ye

**Yekem car, dema ku me ew di mihrîcana Çand û Hunerê ya Amedê de guhdarî kir, bi navê xwe û bi dengê xwe mizgîniya deng û ahengeke nu da me û hin bêtir mûzîka kurd dewlemendtir kir. Dibêje: "Terbiyekirina deng û hosteyiya bikaranîna deng bi perwerdehiyê dibe lê belê frehiya oktav û xweşrengiya deng ji kezebê ye û dana xwedê ye. Bêguman gotineke Mizgîn Tahir jî li ser mûzîka kurd heye û em bawer dikin wê ev gotina wê, di nav mûzîkjenên û mûzîkhezên kurd de derî li nîqaşên nû û geşedar ên li ser mûzîka kurd veke.**

Bi min dikeniyan lê ez bi xwe bawer bûm

***Tu dikarî çîroka noqîna xwe ya deryaya mûzîkê vebêjî?***

Ez ji malbateke hunerkar bûn. Bavê min, meta min, kekê min dengbûj bûn. Her wiha denge dayika min pir xweş bû û ez di hevîrekî wiha de hatim meyandin. Di destpêkê de li Rojava, di nav koma Newrozê de min dest bi mûzîkê kir. Dûre min xwest ez bi akademîk mûzîkê bixwînim. Gellek hevalên bavê min ên dengbêj dihatin cem me û di derbarê mûzîkê de ez ji gellek tiştan agahdar dibûm. Li gel ku ez bi hin beşên hunerê yên wek; şêwekarî, wênekêşî û peykersazî re jî eleqedar bûm, lê meyla min bêtir li ser mûzîkê bû. Min dixwest ez biçime Konserwatuara Opera ya Şamê. Dûre ez çûme şamê, lê belê ne derfet û ne jî xwesteka malbata min hebû ku ez mûzîk bixwînim. Malbatê ji min re digot, "Tu bixwazî em te bişînin Şamê yan jî Rûsyayê, lê belê divê tu ne mûzîk, dermanfroşî yan jî beşeke din bixwînî." Min got, "Na ez dixwazim mûzîk bixwînim." Lê hehiştin û min jî dest bi xwendina arkeolojî kir.
Lê bi xwendina Arkeolojî re li gel lidijderketina malbatê jî min biryar da ku ez mûzîk bixwînim. Bi alîkariya mamosteyên taybet min dest bi amadekariya konsêrwatûarê kir û dûre jî min dest bi xwendina konserwatuarê kir. Piştî ku min vê biryara xwe ji malbata xwe re aşkere kir, bavê min piştgirî da min.

***Tu çawa bi taybetiya dengê xwe hisiyayî û te çawa vê biryarê da?***

Dema ez hîna piçûk bûm kenê xwe bi min dikirin û digotin, "Mizgîn her diqîre." Yanî hê ji zarokî ve ez û herkes ji vê taybetiya dengê min haydar bûn. Erê, perwerde deng estetîze û hoste dike û pisporiyê dide mirov, lê zêdebûna oktavên deng, taybetiya dengên mirovan e û ji ber ku ez xwedî dengekî pir oktav im, dengê min hem dramatîk soprano ye û hem jî soprano ye. Jixwe mamosteyekî min digot dengê te sopranoye biçe cem filan mamosteyî, ew mamoste jî digot biçe cem filan mamosteyî, yanî ew jî li ser frehiya oktavên dengê min ketibûn dubendiyê. Lê ji ber ku min ji bo alto jî û ji bo soprano jî perwerdehî stend ev ji bo min şensekî pir baş bû. Lê oktavên dengên min freh in û ji ber wê yekê ez dikarim soprano, dramatîk soprano û ta radeyekî alto jî bistirêm.

***Çima Amed?***

Piştî min kosêrwatûar qedand min dest bi projeya albûma xwe kir. Dûre piştî ku albûm qediya ez carekî ji bo mîks û masterînga albûmê ez hatim Amedê. Wê demê min û hinek hevalan me hev nasîn. Dûre di mihrîcana Amedê ya sala 2006'an de min konsêrtekî jî li vir da. Ez dîsa vegeriyam Rojava, lê hinek hevalan gotin em li Amedê Navenda Çanda Cîgerxwîn vedikin û em hez dikin ku tu li vê navendê di akademiya mûzîkê de bibî perwerdekar. Li ser vê pêşniyarê ez pir kêfxweş bûm û her çiqas ez ji perwerdekariyê hez nekim û min dikarî bû li Sûriyeyê li Lazkiyê û derên din jî di akademiyên mûzîkê de perwerdekarî kiribûya jî, ji ber ku akademiyeke kurdan bû û bi kurdî bû min bi dilxweşî ev pêşniyar erê kir û ez hatim Amedê.

***Li Bakur û Amedê gel mûzîka te çawa pêşwazî kir?***

Mûzîka min ji wan re hinekî cûda hat. Dibe ku ji gotinên stranên min tênegihîjin jî, lê manşeta stranbêjya min ev e; "Mizgîn operayî distirê." Min hin stranên dengbêjî yên wek 'Heyran Jaro' jî strand. Ji ber vê yekê di destpêkê de şêweya min ji wan re hinekî cûda hat, lê dawiyê pir ji strandina min hez kirin. Jixwe pêşwaziya heval û dostan pir baş bû.

***Di nav mûzîka cîhanê de cihê mûzîka kurdî çi ye?***

Li gor min çend şêweyê mûzîkê hene, lê li cem me stran hene û ev stranên me di nav mûzîka cîhanê de negihîştiye cihê ku şayanî xwe ye.
Li gel ku bi ser teknolojiya înternêtê ve ragihandina mirovên cîhanê pir bi pêş ketiye jî û mirov dikarin hemû tiştan temaşe û guhdarî bikin jî mûzîka kurdî xwe îspat nekirî ye.
Heta ez dikarim bêjim heta niha mûzîka rojhilatî xwe îspat nekirî ye. Ji bo xweîspatkirinê ked û xebat pêwîst e. Erê, stranên me xweş in, di warê pircûreyiyê de mûzîka me dewlemend e, lê ji bo orkêstrayeke almanî, îtalî yan jî welatekî din straneke kurdî lê bixin em negihîştine wê astê.





***Di nav mûzîkjenan de şer heye Ji bo mûzîka tirkî meriv dikare hin sedeman bîne ziman, lê ji ber dengbêjiyê û taybetiyên din mirov dikare bêje reseniyeke mûzîka kurdî heye. Gelo mûzîka kurdî, li gel vê reseniya xwe, çima nagihîje wê astê?***

Mûzîka kurd, geşedar e, lê belê kêmasiyên wê yên akademî, dezgehîbûyîn û mûzîkjenan hene. Di hemû mûzîka rojhilatî de ev kêmasî hene. Di mûzîka kurdî de frekansên dengên koma, yanî dengên taybet ên ku ji dabeşkirina dengên bingehîn pêk tên hene. Ewropiyan xwe ji van arîşeyan rizgar kirine û tenê li ser du meqaman, yanî li ser Major û Mînor bingeha mûzîka xwe ava kirine. Lê li cem me 7 meqamên sereke hene. Ev pirrengiya mûzîka me barê mûzîka me giran dike. Ji ber vê yekê divê mûzîkjen û kesên ku bi mûzîkê bilîn dibin, li ser meqamên kurdî serê xwe biêşînin û xebatên mezin destpêbikin dibe ku li ser meqamên kurdî hinek qaîdeyan derxînin holê. Lê mixabin di nav mûjîkjenên kurd de tevlîhevîyek heye û ne li ser mijarên bingehîn lê li ser mijarên vala bi hev re şer dikin.






***Li ser çi şer dikin?***

Wek nimûne: Hin kes dibêjin; 'Di mûzîka kurdî de em dikarin harmonî çêbikin û bi vî awayî wê bigeşînin.' Hin kes dibêjin; 'Na harmonî ne pêwîst e, tenê xetên mûzîka kurdî bes in.' Hin kes dibêjin; 'Ev amûrên mûzîkê li stranên kurdî digoncivin, em van amûran bikar bînin.' Hin kes dibêjin; 'Na ev amûr ne amûrên mûzîka kurd in amûra me tenê tembûr e.' Yanî ferasetên bi vî awayî mûzîka kurd aza nakin, pûç dikin û nahêlin bigeşe. Mûzîka kurd li ber zayînê ye, lê hîna ne za ye, êşikên zayînê dijî lê zayîn hinekî dereng dikebe.

***Li ser derengzayîna wê bandora ziman çiqas heye? Yanî 'bi kurdî hestkirin' tune be, wê mûzîkjen çawa binivisî û bistirê?***

Mûzîkjen bi kurdî nejî, nikare hunerê pêk bîne. Di opêrayê de carinan mamosteyên min stranên elmanî û îtalî didane min da ku ez bistirêm. Ji ber ku min bi elmanî û îtalî nezanîbû, beriya her tiştî min gotinên wê stranê werdigerand û min wê stranê vedikola da ku ez ji çînoma wê têbigihîjim û wê hest bikim. Bi kurtasî meriv çîroka stranan an jî gotinên ku bi newa têne nexşîn hest neke mirov nikare stranbêjiyê bike.

***Bandora mûzîkên cîran li ser mûzîka kurd çawa ye?***

Gelên cîran, bi her awayî bandorê li hev dikin û bêguman bandoreke hunerî jî li hev dikin. Her çiqas neyê hezkirin û bi paşverûtî bê nasîn jî mûzîka erebî xwedî esalet û reseniyeke xwe ye. Erê wê jî têra xwe ji mûzîka farsî û kurdî bandor wergirtî ye, lê belê xwedî bingeheke xwe ye. Mûzîka tirkî ne wisa ye. Herdem ji derdora xwe berheman berhev kirî ye û ji xwe re bi gotin û şîrove kirî ye. Dibêjin; 'Dizan ji dizan dizî, erd û asîman lerizî.' Lê ev nayê wê wateyê ku tirk, li ser mûzîkê nexebitî ne. TRT û kesên dibin banê wê de mûzîkên gelên din ji xwe re berhev kirine û bi grîngî li serê xebitîne. Bi taybetî mûzîka hunerî ya tirk, li gor xwe mûzîkeke bi qelîte ye. Hunermendên vê beşa mûzîka tirkî yên weke Zekî Müren û hin kesên din, mûzîkjenên hoste ne û baş xebitîne. Tembûrê pir bi pêş xistine. Yên me her dibêjin tembûr amûra me ye, lê belê xebatên baş pêk nayînin. Niha êdî ne tenê mûzîka kurd, her wiha mûzîka tirkan jî di bin bayê mûzîka rojava de ye.
Bandor ne xerab e, lê divê mûzîkên gelan reseniya xwe jî biparêzin. Mîzîka kurd jî bi destan û çîrokên xwe ku bi dengbêjiyê hatine hunandin, xwedî reseniyeke xwe ye. Di xwe de çand, wêje, dîrok û mûzîkê bi hev re dihewîne. Hin ji mûzîkjenên me dibêjin; 'Na, divê em stranan ji gund bînin û bi heman xwerûtiya wan ew deyînin ser dikê, lê belê îro ev têr nake. Divê bêne geşkirin û dewlemendkirin. Eger ev nebin wê mûzîka me roj bi roj têk biçe, lewre wê bala nifşên nû nekêşe. Dema mirov li berhemên Mozart û gellek mûzîkjenên din ên cîhanê yên bi nav û deng dinihêre, mirov dibîne ku çêj û şêweyên mûzîkên gelêrî yên gelên wan tê de reng dane wan berheman.

***Dengbêjî mûzîka me ya resen e û hest, wêje û dîrok e, lê emê ramanên xwe yên hevdem û bajarvaniyê çawa bînin ziman?***

Çawa di navbera Melayê Cizîrî, Ehmedê Xanî û Cîgerxwîn de xelek hebin, di navbera dengbêjî, Tehsîn Taha, Şakiro, Cizrewî û yên din ta Mihemed Şêxo de jî xelek hene û li dû hev dom dikin, lê belê xeleka di navbera me û van hunermendan de wunda ye. Divê hunermend û stranbêjên me, hay ji vê xeleka wunda hebin û li gor vê helbiwestin. Yanî dema em van hunermendan guhdarî dikin em hestên demên wan û heta hestên xwe yên îro jî diçêjin. Em mûzîka xwe nageşînin, rojavayiyan gellek meqamên me yên 'beyat' birine wergerandine nîhavend an jî mînor û ji xwe re bi gotinên xwe xemilandine lê belê me tiştekî li ser kevneşopiya xwe dananî ye. Seîd Yûsiv dibêje; 'Kofî grêda û hate ji wê da, li ba min rûnişt kete kêfê da.' Ev dîmenê ku Seîd bi newayê tîne ziman û dikare bibe şano yan jî sînema niha peyda nabe. Hem di mûzîk, şano û sînema de peyda nabe hem jî di jiyanê de peyda nabe; lewre me hişmendiya xwe têk birî ye, em guherîne û me krasên biyanî li xwe kirî ye.

***Perçebûna Kurdistan, tîneke çawa li mûzîka kurd kirî ye?***

Erê kirî ye. Yanî dema mirov straneke Rojhilat bîne Bakur wê diyar bibe ku ew strana rojhilat e, dema mirov yeka bakur bibe Başûr an jî rojhilat wê diyar be ku ew, strana bakur e. Yanî mûzîka farsî mûzîkeke tasawûfî ye yanê tê de êş û azar û xemgînî pir heye, gotin di xwe de mazoşîstiyê jî dihewîne û vê yekê bandor li mûzîka rojhilat jî kirî ye.
Lê dîsa jî di mûzîka kurd a rojhilat de reseniyek xas a xwe tê de haye û coş û kelecan xwe dide der. Li gel vê yekê her herêmên Kurdistanê xwedî şêweyeke xwe ya mûzîkê ne jî. Yanî şêweyên stranên Botanî cûdane ji yên Serhedê, yan jî yên herêma erdelan cûda ne ji yên herêma soran. Ev pircûrehî li her aliyên Kurdistanê heye.
Lê ev ne kêmasî, berovajî dewlemendî ye û divê li ser vê pircûrehiyê tiştên baş û xweş bêne afirandin.

***Xebatên te yên mûzîkê çawa dimeşin û tu niha bi çi karan bilîn dibî?***

Her çiqas pirsgirêkên tomarê hebin jî, ez û aranjerê xwe Mehmûd Berazî, em niha albûmeke pir cûda amade dikim. Hemû awaz yên Berazî ne û gotin min ji hevalên xwe yên gotinnûs û helbestkar berhev kirî ye. Stranên vê albûmê ne stranên opêrayî, ne jî stranên pir klasîk in. Cûreyeke xwas a ku me di vê albûmê de xwestiye bê afirandin e. Hemû stran nû ne. Em hêvî dikin ku sala bê em albûmê biqedînin û belav bikin. Ji bilî vê xebatê, projeyeke min a bi navê 'Şahmaran' heye. ez niha li ser vê projeyê dixebitim. Di çarçoveya vê projeyê de me Orkestrayeke bi navê 'Orkestraya Heskîfê' damezirand. Di vê orkestrayê de ez li gel mûzîkjenên din hem stranbêjî dikim û hem şefîtiya orkestrayê dikim. Di vê orkestrayê de em stranên dengbêjiyê bi şêweyeke operal yanî pirdengî distirênin. Stranên orkestrayê dîrokê vedibêjin, qala dema Asûriyan û Mediyan ku Babilî dibin hevbendê Mediyan û bi hev re Asûriyan dişikênin dike. Dûre em vedigerin dema Ûrartû. Di vê projeyê de em hişmendiya jinê derdixin pêş. Em hewl didin ku bi ser çîroka jina ku bi bergîdana wê hevalbendî di navbera Babîliyan û Medan de pêk tê û dibe sedema şkestina Asûriyan, rola jinê ya li ser dîrokê vebêjin.

***Ji bo xebatên gelemperî ên li ser mûzîka kurd hun çi dikin?***

Ev nêzîkî salekê ye em amadekariya Kongreya Çand û Hunerê ya Kurd li dar bixin. Me ya yekemîn di 2011'an de li Amedê pêk anî. Ya duyem me xwest li Hewlêrê pêk bînin, lê ji ber hin pirsgirêkan ev pêk nehat. Lê ji ber ku şerê li Başûr û Rojava û bi taybetî li Kobanê bayê yekîtiya neteweyî berz kir, me hewl da ku ev Kongreya Çand û Hunerê pêk bînin. Hêvîdarim ku di nav vê germahiya neteweyî de ev kongre jî pêk bê.

## Sînemagerên kurd digîhên

# Têgeha sînemaya kurdî bi cîh dibe

Azad Xanzade



Weke ku tê zanîn dîroka sînemayê 100 saliya xwe derbas kir û sînemaya kurdî jî di asta xwe kifşkirinê de ye. Ku bi taybetî em sînemaya kurdî bifikirin astengî diyar in; ji kêmasiya aboriyê bigre heta astengiyên siyasî, ji nebûna lîstikvanan bigre hetanî biçûktiya piyasê. Li hember van astengiyan em dikarin bibêjin ku di 20 salên dawî de sînemaya kurdî di dema zêrîn de ye.

Her çiqas fîlmên kurdî di festîvalan de xelatên payebilind bistînin jî gelek caran li holan derfetên nîşandayînê nabînin. Haya gelek kesan ji van filman nabe. Bi vî hincetê li Stenbolê, di bin bana Weqfa İsmail Beşikçi de di sala 2012'an de Koma Lêkolînên Sînemaya Kurdî hat avakirin û her hefte fîlmên kurdî nîşan dide. Bi vî awayî valahiya sinemaya kurdî li Stenbolê tije dike. Em jî wek BasNûçe bi endamê komê re axivîn.

**Fîlm, derhêner û temaşevanan digihînin hev**

Endamê komê Esra Şahin, ji me re behsa komê dike û dibê ku ew her hefte roja çarşemê dicivin û biryar digrin ku kîjan filmê nîşan bidin. Şahin dibê ku heta niha bi gelek derhêneran re ketine pêwendiyê û wiha didomîne: "Em salê du dewr, her dewrê jî 12 hefteyan fîlman nîşan didin. Her hefte roja înê, êvarê li hola Weqfa İsmail Beşîkçî bi beşdariya nêzikî 50-60 kesî fîlm tên nîşandayîn. Ku derfetê derhêner hebe ew jî tê û moderatoriya kesek ji komê em li ser fîlmê diaxivin. Bi vî awayî fîlmên ku derfet nabînin di holên sînemayê de bên nîşandayîn li vir derdikevin pêşberî temaşevenên xwe."

Muhammed Gözütok jî diyar dike ku armanca wan; danîna arşîveke sînemaya kurdî, nîşandana fîlmên kurdî li Stenbolê, derxistina kovareke kurdî li ser sînemayê û birêvebirina hin projeyên perwerdehiya sînemayê ye. Gözütok: "Me heta niha bi berdewamî fîlmên kurdî nişandana û piştî nîşandana filman bi tevî derhêner, berhemsaz an jî lîstikvanên van berheman re li ser sînemayê hevpeyvînan li dar xistiye. Arşîveke baş der heqê sînemaya kurdî de pêk aniye. Li ser projeyeke perwerdehiya sînemaya derhêneriya sînemaya kurdî jî dixebitin."

> **Koma Lêkolînên Sînemaya Kurdî ku di bin bana Weqfa Beşikçi de hat avakirin her hefte fîlmên kurdî nîşan dide**

Gözütok diyar dike ku her çiqas danîna holên teybet zû be jî li Stenbolê pêdvî bi nîşandana filman a berdewamî heye. Gözütok: "Le belê gelek kes dixwazin filmên kurdî temaşe bikin, derhêner û lîstikvanên wan nas bikin, bi wan re li ser sînemayê bipeyvin. Me bi qasî ku ji destê me hat di bin banê Weqfa İsmail Beşikci de ev rol pêk anî. Bi vî awayî derhêner jî helwesta temaşevanan û fikrê wan hîn dibin. Di nav civakê de berhemên sînemaya kurdî bêtir li ber çavan dibe û balê dikşîne. Bêguman ev xebat cihê şanazî ye ji bo me."

Wek ku tê zanîn li Stenbolê serjimara kurdan zêdeye lê li hember vê zêdebûnê festîvalek fîlmên kurdî nîşan bide nîne. Ku ji vî aliyî de kom vê valahiyê bi awayekî dadigre. Gözütok dibê ku dema dest pê kiribû, lidarxistina festîvalek nedabûn pêşiya xwe. Gözütok: " Rastî pêwîstiyeke wiha jî heye. Lewre qasî du mîlyon kurd li Stenbolê dijîn, gelek sînemager û xwendekarên kurd li vî bajarî ne. Her wisa Stenbol paytexta rewşenbîrî ya tirkan e. Gelek kes dixwazin berhemên sînemaya kurdî temaşe bikin. Lewma niha em wek kom li ser projeyekê dixebitin. Bi tevî hin saziyên sînemaya Kurdistana başûr em hewl didin ku festîvaleke sînemaya kurdî li Stenbolê bi rê ve bibin.

**Sînemaya kurdî di dema xwekifşkirinê de ye**

İlyas Kaya, balê dikşîne nedewletbûna kurdan û astengiyên li ber bikaranîna ziman û dibê ku 'ev jî dibe sedem ku sînemaya me paşve bimîne.' Kaya: "Sînemaya me piranî wek sînemaya sirguniyê, sînemaya gerîlatiyê hat binavkirin. Ku em Herêma Kurdistanê nehesibînin sînemaya gelek bê sitatû li holê ye. Ev jî sînema kiriye qadeke tekoşînê bo gelê kurd. Her çiqas diyardeyên hevpar yên sînemaya dinyayê hebe, kurd ji hin aliyan ve ji wan diqetin. Di sînemaya kurdan de "ji ku lênêrîn" pir girîng e. Ji ber ku ev pirî tiştan diyar dike. Her çiqas fîlma "Zere" hebe jî bi min divê em sînemaya kurdî bi Yılmaz Güney bidin destpêkirin. Ez dikarim bibêjim ku ji nû ve xwe avakirina sînemaya kurdî jî di salên 90'î de dest pê kir. Ku em sed saliya sinemayê difikirin, derengmayînek xwuya dibe."

Kaya, diyar dike ku di roja îro de pêşveçûnek di sînemay kurdî de heye û ev ne tenê bi kişandina filman; bi festîval, vekirina navendên perwerdeyê û çalakiyan e. Kaya: "Niha sînemaya me di dema xwe kifşkirinê de ye, helbet bi dehan problem hene. Ji vana ya sereke kurd li erdnîgariya xwe di bin hukmê dewletên din de dijîn, ev jî dibe sedem ku sînemaya kurdî ji hev qetiyayî be. Di hêla aborî de jî astengî hene, ji ber ku sînema karek biha ye. Ji ber aboriyê hin fîlmên kurdî di holên sinemayê de cî nagrin û xwiya nabin. Ji bo wî divê riyên akternatîf bên dîtin û em jî bi wê pêwîstîyê dixwazin qada vala tije bikin."

> **Endamên komê li aliyekî nîşandan û bernameyên din amade dikin û li aliyê din jî xebatên sînemayî didomînin**

Gülsüme Demîr, ser alternatîfbûna komê diaxive û dibê ku bi saya nîşandayîna filman gelek fîlmên ku qet nehatî nîşandayîn bi saya koma wan tên nîşandayîn. Demir: "Ji ber ku li çar perçeyê welat û li dîasporayê sînemagerên kurd ji hev qut in û sazîyeke ku wan bigihîne hev nîn e, ku li perçeyekî fîlmek tê kişandin haya perçeyên din jî wê fêlmê nabe. Ji ber ku di holên sînemayê de jî nayên nîşandayîn, bo nîşandayînê tenê festîval dimînin. Ji ber ku li Stenbolê festîvala fîlma ya kurdan fîlm xwe naghînin temaşevanên xwe. Bi awayekî koma me vê valahiyê dadigre."

## 'Fîlm jî bi kurdî ye, şîrove jî'

Fatoş Yıldız, binê wê yekê xêz dike ku çalakiyên wan bi tevayî kurdî ne û wiha dom dike: "Têgeha Sînemaya Kurdî ku hê nû pêk tê, em jî di bin banê Weqfa İsmail Beşikçi de fîlmên kurdî nîşan didin û piştî nîşandayîna fîlman rexneyên xwe bi kurdî dikin û ji bo me jî ev tiştekî pir girîng e. Kurd niha li ser berhemên afirandina bi kurdî diaxivin û tişta divê bibe jî ev e. Ji hêla din ve mirovên cihê li vir fîlmên cihê dibînin û bi derhênerê hemû perçeyan re dibin nas. Bi nîşandayîna fîlman têgeha Sînemaya Kurdî jî tê rûniştandin. Fîlm bi hemû zaravayên kurdî tê nîşandayîn, şîrove bi kurdî tên kirin, bi awayek sînemaya kurdî serencema van pêkhatinan in."